

ÇAPA EWROPA

# RÛDAW

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA




*Humeyra jî êdî bi kurdî distire*

» 9

# Em bi lojîka DIJMINATÎ Û ALTERNATÎVA PKK siyasetê nakin

Hevpeyvîna bi endamê berê yê Konseya Serokayetiya PKKê, **Nizamedîn Taş** re

10 / 11 »


Hejmar / Nr. 214
5 Îlon / September 2013

| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

4 191631 701506 00036

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu


## Xelata Aştiyê ya Aachenê çû Duhokê

» 2

## Kewgêrî ye... ...li Bişêriyê û Almanyayê jî



» 7

www.arsivakurd.org

# Xelata Aştiyê ya Aachenê çû Duhokê




Metran Rabban Al-Qas: Ev xelat wê di dahatûya dibistana me de wê xwedî cihekî taybet be.

Wêne: Azad Baker

**Zekî Ozmen**

Dibistina Navnetewî ya Duhokê û du dibistanên almanî hêjayî Xelata Aştiyê ya Aachênê ya îsal hatin dîtin. Di destnîşankirina sedemên xelatkirina Dibistina Navnetewî ya Duhokê de hate diyarkirin ku ev dibistan projemodeleke aştî, aramî û hevtêgihiştina li Rojhilata Navîn e.

Axaftina vekirina merasima xelatê ji hêla şaredarê bajarê Aachenê, Bjorn Jansen, ve hat kirin. Jansen bi taybetî bixêrhatina damezrênerê Dibistina Navnetewî ya Duhokê metran Rabban Al-Qas kir û diyar kir ku ji bo wî rûmeteke mezin e ku wî kesekî ku xizmeta hevtêgihiştin û aştiyê li Rojhilata Navîn dike naskiriye. Bi navê komîteya Xelata Aştiyê ya Aachenê, Tina Terschmitten jî diyar kir ku sedema xelatkirina wan ya vê dibistana li Başûrê Kurdistanê karekterê wê yê nimûnegirtinê ye.

### "Hemû mirov bi awayekî azad têne dinyayê"

Damezrênerê Dibistina Navnetewî ya Duhokê metran Rabban Al-Qas jî spasiya komîteya Xelata Aştiyê ya Aachenê ji bo layîqdîtina wan a xelatê kir û got "ev xelat ji bo dibistana me xelateke girîng e û di dahatûya dibistana me de wê xwedî cihekî taybet be." Al-Qas destnîşan kir ku li dibistana wan ji gellek etnîsîte û olên cuda şagirt xwendina xwe didomînin û armanca wan a sereke fêrkirina zarokan ya hevtêgihiştin û ya hevfêmkirinê ye.




Rabban Al-Qas herwiha bibîr xist ku gellek xelk ji ber şer ji Îraqê direvin, lê Kurdistan cihekî bi ewle ye û li şûna Xiristiyan dev ji welêt berdin, têne Kurdistanê û tên li gundên xwe yên berê niştecih dibin: "Ji xwe re dixebitin, debara xwe dikin, Herêma Kurdistanê jî ji wan re dibe arîkar."

### Berê Leyla Zana jî heman xelat wergirtibû

Herdu dibistanên din yên ku hêjayî xelatê hatin dîtin, dibistanên ji Berlîn û Offenbachê bûn. Herdu dibistanan biryar standibûn ku destûrê nedin endamên artêşa Almanyayê ku artêşa bi şagirtên wan bidin nasîn.

Ji bilî metran Rabben Al-Qas, du şagirtên heman dibistanê û nûnerê hikûmeta Herêma Kurdistanê yê Almanyayê Dilşad Barzanî jî beşdarî merasima xelatdayinê bûn. Di salên borî de kesayetên mîna parêzer Eren Keskîn û siyasetmedara kurd Leyla Zana jî jêjayî Xelata Aştiyê ya Aachênê hatibûn dîtin.



# Maddeya hişbir bi tîr û kevan avêt girtîgehê

**Köln (Rûdaw) -** Kesekî 36 salî xwest bi tîr û kevan maddeyeke hişber bigihîne hevalê xwe yê di girtîgehê de, lê di heldana xwe de tam negihişt encama ku li bendê bû. Kesê ku beriya heftiyekê ji girtîgeha Washingtonê derketibû, xwest soza ku dabû hevalê xwe yê li heman girtîgehê pêk bîne. Ji bo vê yekê jî bi tîrekî ve kîsikekî biçûk yê tije maddeye hişber girêda, lê xuya dike ne nîşangirekî zîrek bû û şûna cihê xwestî tîr çû ser banê girtîgehê.

Piştî vê hewla wî, ew dîsa hate girtin û wî di lêpirsîna polîs de îfadeyeke ji hewla xwe seyrtir da; Wî ji polîs re got ku wî xwestiye bi tîr û kevan nêçîra sivoriyên li ser banê girtîgehê bike. Lê vê îfadadeya wî jî fêde nekir û ew ji ber vê hewldana xwe ya seyr dîsa kete girtîgehê.

**Rûdaw**

Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Sernûser
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

Dîzayner
Hamdullah Yumlu

Rêveberî û belavkirin
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

Şêwirmendê yasayî û aborî
Ayhan Çiftçî

Marketing û reklam
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Pêwendî
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

Belavkirin / Vertrieb:
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

© Hemû maf parastî ne

Hausarzt M.D. (Rus.)
Serdar Mustafa
Facharzt für Allgemeinmedizin

Sprechzeiten:

| Mo | Di | Mi | Do | Fr | Sa |
|---|---|---|---|---|---|
| 8-12 | 8-12 | 8-12 | 8-12 | 8-12 | 8-12 |
| 15-18 | 15-18 | | 15-18 | 15-18 | |

Krimstraße 2. 44145 Dortmund
Tel. 0231 / 81 85 47 • Fax 81 80 74
Mobil 0171 / 27 00 550

Bernameya bibîranîna Dr. Nebi Kesen
Roja şemiyê 14 îlonê 2013



Li goristanê:
Saet: 12:00-13:30
Friedhof ALTONA,
STADIONSTR. 5, 22525 HAMBURG
Civîn:
Saet: 13:30-17:00
HBE HAUS BÜRGERSCHAFTLICHER ENGAGEMENTS
ALSENSTR. 8, 22769 HAMBURG

Em hemû heval, dost û welatparêzên kurd dawetdikin.

Malbata Kesen û Kovara Bîrnebûnê

www.arsivakurd.org

SWP

## "Başûrê Kurdistan dibe eyaleteke Tirkiyeyê"

*Köln (Rûdaw) - Enstîtuya Almanî ji bo Siyaseta Navnetewî û Ewlekariyê (SWP) analîzeke pisporê pirsên Rojhilata Navîn, Dr. Guido Steinberg, weşandiye ku tê de rewşa li Sûrî, Iraq, Tirkiye û herwiha herêmên kurdî tê nirxanidin. Di analîza bi sernavê "Iraq û şerê navxweyî yê sûrî" de, Steinberg diyar dike ku sebeba têkçûna ewlekariya Iraqê şerê navxweyî yê li Sûriyê ye, lê sedema sereke li Iraqê bi xwe ye, ku li wir Malikî hewl dide bi awayekî otorîter desthilata xwe bidomîne. Li gor Steinberg, sarbûna pêwendiyên di navbera Tirkiye û Iraqê jî rewşeke wisa peyda kiriye ku niha Kurdên Başûrê Kurdistanê sûdmendê herî mezin bin. Steinberg destnîşan dike ku Tirkiyeyê li hemberî Kurdên Başûr derbasî "stratejiyeke hembêzkirinê" bûye û dibêje eger weke plankirî xeta petrolê ya rasterast ya di navbera Başûrê Kurdistanê û Tirkiyeyê di 2013ê de bi dawî bibe, ev jihevnêzîkbûn wê bihêztir bibe û wiha berdewam dike: "Di rewşeke wisa de wê pêwendiyên di navbera Tirkiye û hikûmeta navendî ya Iraqê de hêj xerabtir bibin, di heman demê de Kurd wê hêj bêtir bi hevalbendên xwe yên li bakur [mebest Tirkiye ye – Red.] ve bên girêdan. Di senaryoyeke wisa de, Kurdistana Iraqê bi kêmasî di reyalîteyê de xatirê xwe ji sazûmana dewleta Iraqê dixwaze û dibe şêweyekî ji eyaleteke (protektorat) Tirkiyeyê."*



Rûdaw naveroka raporta komîteya lêkolînê ya kongreya neteweyî ya kurd belav dike:

# Li Rojavayê Kurdistanê komkujî nehatiye kirin

**Hêvîdar Ehmed** *Hewlêr*

Komîteya lêkolînkirina bûyerên Rojavayê Kurdistanê di rapora xwe ya derbarê îdiayên ku li wî beşê Kurdistanê komkujî li hemberî gelê kurd pêkhatiye de, bi ti awayî behsa wê yekê nekiriye ku li Rojavayê Kurdistanê komkujî hatibe kirin, herçiqasî berê PKKê û PYDê digotin ku komkujiyek pêkhatiye.

Di wê raporê de, ku komîteyê piştî vegera xwe ji Rojavayê Kurdistanê amade kiriye û kopiyek jê gihiştiye Rûdawê jî, hatiye gotin ku sê çîrokên cuda derbarê bûyerên herdu navçeyên Tel Eran û Tel Hasil ji aliyê komîteyê ve hatine bihîstin û di ti yekê ji wan çîrokan de derneketiye ku li wan herdu cihan komkujî li dijî Kurdan hatiye kirin.

### 450 kurdên kuştî

Roja 19.08.2013ê komîteya lêkolînkirina bûyerên Rojava serdana Rojavayê Kurdistanê kir. Ev komîte li ser doza serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û ji aliyê komîteya amadekar a kongreya neteweyî ya kurd hatibû pêkanîn û 5 rojan li Rojavayê Kurdistanê ma. Komîte diyar dike ku bi ti awayekî ji wan re nehatiye teqezkirin ku zêdeyî 450 zarok û jin û mêrên kurd hatibin kuştin û serjêkirin, wek çawa berê PYDê behs dikir.

### 400 kes dîtine

Li gor raporê, komîteyê serdana navçeyên Dêrik, Girkê Legê, bereya şer li gundê Rumêlan Paşa, gundê Zexîre, Tirbespî, Çil Axa, Qamişlo, Dirbêsiyê û Serê Kaniyê kiriye û hevdîtin bi dora 400 kesan re kiriye. Di raportê de hatiye gotin ku komîteyê xwestiye herê bajarê Amûdê, lê ji ber ku nûnerên PKKê û BDPê di komîteyê de ne amade bûn serdana wê deverê bikin, serdan pêknehat. Di raportê de hatiye diyarkirin "tevî ku endamên komîteyê daxwaz kirin ku serdana bajarê Amûdê bikin, lê Delîl Amed û Şîlan Emînoglu nerazîbûna xwe nîşan dan û behsa wê yekê kirin ku li wî bajarî kêşeyeke navxweyî derketiye û ev yek jî ne erkê komîteya me ye."

Di nîvê meha Pûşbera 2013ê de, gava hejmareke çalakvanan li Amûdê li dijî YPGê û PYDê xwepêşandan kirin, hêzên YPGê gule berdan xwepêşanderan û niha bi wê yekê tên tometbarkirin ku 7 xwepêşander kuştine.

### Xelk YPGê û PYDê rexne dikin

Di komîteya lêkolînê de, ku ji 9 endaman pêk hatibû, nûnerên ji her çar parçeyên Kurdistanê û nûnerê serokê Herêma Kurdistanê tê de hebûn. Li gor rapora wan, komîteyê lêkolîn ligel xelkê kiriye û ji wan re zelal bûye ku li ser pêkanîna herdu hêzên leşkerî bi navên Asayiş û YPGê li Rojavayê Kurdistanê du nerînên cuda hene: Encûmena Niştimanî ya Kurd li Sûriyê (ENKS) û xelkên nêzîkî wê di wê baweriyê de ne ku ew herdu hêz "ji bo berjewendiya tekane aliyekî kar dikin", lê xelkên nêzîkî YPGê û PYDê van hêzan wek hêzên "niştimanî" binavdikin.

Serokê Herêma Kurdistanê berê ragihandibû ku eger komkujî li hember Kurdên Rojavayê Kurdistanê hatibe kirin, ew bêdeng nabin û wê wan biparêzin. Lê dûre hevserokê PYDê Salih Muslim ragihand ku Rojavayê Kurdistanê ji aliyê hêzên YPGê ve bi tevahî parastî ye û pêwistî bi ti hêzeke din nîne. Muslim ew yek jî got ku eger aliyek hêzê bixwaze, ew amade ne wan biparêzin.

### Komîte: Mesîhiyên Rojava tên revandin

Tevî wê dilniyakirina Salih Muslim, lê komîteya lêkolînê di rapora xwe de behsa wê yekê dike ku Rojava di warê ewlekariyê de ne aram e: "Ji ber nebûna aramî û ewlekariyê li Rojavayê Kurdistanê, hejmareke bazirganên navçeyê koçber bûne û beşekî din jî karên xwe sekinandine." Herwiha tê diyarkirin ku rewşa Mesîhiyan jî pirr xerab e û heta niha jî "dora 48 kesên mesîhî li Hesekê û 16 kesên mesîhî li Qamişloyê hatine revandin û dûre li hember pereyan hatine azadkirin." Herwiha Mesîhiyên Rojavayê Kurdistanê daxwaz ji komîteyê kirine ku "Mesîhî neyên piştguhkirin û wek Kurdan beşdarî îdarekirina navçeyê bên kirin."

### "3 çîrok hene"

Derbarê navçeya Til Eran û Til Hasil de, ku bi gotina YPGê û PYDê li wir komkujî li hember Kurdên Rojava hatiye kirin, rapora komîteyê behsa wê yekê dike ku ji ber dûriya navçeyê û hebûna şer li ser rê û nebûna "ewlekarî û aramiyê", komîteyê "nikaribû" serdana wê navçeyê bike, lê li Qamişloyê "gellek hevdîtin ligel 3 grûpên cuda yên xelkên wan herdu navçeyan hatin kirin, ku pêk hatibûn ji 50 kesan, ku ew jî 18 jin, 11 zarok û 21 mêr bûn". Li gor raporê, "di nav wan grûpan de 3 çîrok û nêrînên cuda li ser bûyeran hebûn."

Yek ji wan çîrokan wiha ye ku li wan navçeyan "17 kes hatine kuştin, ku di nav wan de 4 çekdarên girêdayî yekîneya Cebhet el-Ekrad hebûn." Li gor vegotineke din: "25 kes hatine kuştin, ku pirraniya wan di encama topbarana rejîmê de hatine kuştin." Di vegotina sêyem de jî hatiye gotin ku "Ji destpêka meha 2yê ya 2013ê ve û heta 31.07.2013ê dora 70-80 kes hatine kuştin."

Piştî hevdîtinan û li gor raporê, komîteyê kifş kiriye ku ev aliyên cuda beşdarî şer û pevçûnan bûne: Cebhet el-Nusre, Dewleta Îslamî li Iraq û Şamê, Azadîxwazên Şamê, Yekîneyên Selahedînê Eyûbî, Yekîneyên Azadî, ku ji aliyê kesekî bi navê Azad Merî Şeebo ve tên birêvebirin.

### Lîsteya kuştiyan "bi dest neket"

Komîteyê di rapora xwe de behsa şerê herdu navçeyên Til Eran û Til Hasil kiriye û dibêje: "Ti grûpekê ji wan hersê grûpan, ku her yekê ji wan şêwazekî bûyeran vedigot, zêdeyî navê çend kuştî û girtiyan nizanibûn" û ti lîsteyeke navê kesan li ber dest nebû. Herwiha komîteyê "daxwaza navê kuştî û girtî û wêne û vîdyoyan ji wan hersê grûpan kiriye, lê tiştek negihiştiye destê komîteyê."

### "PYD derman û şîrê zarokan nade"

Li gor raporê, kesên ku hevdîtin bi wan re hatiye kirin, bi berdewamî gilî û gazin ji PYDê kirine û gotine: "Hemû arîkariyên ku ji bo Rojavayê Kurdistanê dihatin şandin, wek mînak arîkariyên tendirustî û şîrê zarokan, gava gihiştine destê "Heyva Sor a Kurdî", ku saziyeke taybet e bi warê tendirustî û girêdayî PYDê ye, bi kêfa xwe arîkarî belav kirine. Lê Heyva Sor a Kurdî ev tawanbarî red kiriye û gotiye: "Hemû arîkarî û materyal bi lîste û belge hatine belavkirin û her aliyek hêzê bixwaze, em amade ne deynin ber destê wan."

**Daxwaziyên xelkê Rojavayê Kurdistanê bi rêya komîteya lêkolînê**

- *Cîbicîkirina Peymana Hewlêrê*
- *Rawestandina şer li Rojavayê Kurdistanê di demeke zû de*
- *Nabe aliyek tenê biryara şer û aştiyê bide*
- *Pêkanîna hêzeke leşkerî ya hevbeş*
- *Zû şandina dermanan*
- *Vekirina deriyê sînor yê Pêşxabûr, bi şertekî ku Rojava ne di destê aliyekî tenê de be*
- *Rawestandina koçberiya Kurdên Rojava bo Herêma Kurdistanê*
- *Vegera serokatiyên partiyan bo Rojavayê Kurdistanê*
- *Rêzgirtina azadiya raderbirînê û karê rojnamevanî û rewşenbîran*

www.arsivakurd.org



## Cîgirê serokê giştî yê CHPê, Erdogan Toprak:

# Emê bi serdana herêma Kurdistanê kêfxweş bibin

Partiya Komara Gel (CHP), ku li Tirkiyeyê sermuxalefet e, beriya du heftiyan li ser vexwandina serokwezîrê Iraqê Malikî serdana wî welatî kir. Şandeya di bin serokatiya serokê giştî yê CHPê Kemal Kiliçdaroglu de, bernameya xwe ya serdana bajarên Necef û Kerkûkê ji ber sedemên ewlehiyê betal kir û tenê li paytext Bexdayê hevdîtin pêk anîn. Endamê şandeyê Erdogan Toprak, ku di heman demê de cîgirê serokê giştî yê CHPê û parlementerê heman partiyê yê Stembolê ye, derbarê serdana xwe, têkiliyên partiya wî yên bi Başûrê Kurdistanê re û kongreya netewî ya kurd de pirsên me bersivandin.

**Rûdaw: Birêz Toprak, serdana we ya Iraqê ya di bin serokatiya serokê we yê giştî Kiliçdaroglu de çawe bû û çavdêriyên we çi ne?**

**Erdogan Toprak:** Wekî şandeya CHPê em li ser vexwandina serokwezîrê Iraqê birêz Nurî Malikî çûn, lê digel ku ji ber sedemên ewlehiyê me nikarîbû hinek serdanên ku di bernameya me de hebûn pêk bînin jî, me li Bexdayê bi muxatabên bernameya xwe re hevdîtin pêkanîn. Me civîn û hevdîtinên samîmî pêkanîn. Digel birêz serokwezîr Malikî, em bi wezîrê karê derve birêz Hoşyar Zêbarî re jî hatin cem hev. Em derbarê têkiliyên dîplomatîk yên herdu welatan û awayên pêşdebirina van têkiliyan de axivîn. Bi wezîrê aborî, burokratan re, digel karsazên me, em li ser pêşdebirina pêwendiyên Iraq û Tirkiyeyê yên aborî axivîn. Me gavên giring derbarê pêşdebirina Iraqê ya ji hêla karsazên me ve, refaha wê derê, projeyên dewlemendkirina wê derê, cihgirtina di îhaleyan de û rahiştina berpirsyariyan de avêtin.

**Hûn bi encamên çawa ji serdanê vegeriyan?**

Em ji serdana Iraqê bi kêfxweşî zîvirîn. Ez bawer dikim me di warê têkiliyên herdu welatan de diyalogên bikêrhatî kirin û ji bo têgihiştina hev ya dualî gavên baş avêtin. Di warê têkiliyên dostane yên welatê Iraqê û birêveberên wê yên bi Tirkiyeyê re, bi vê serdana me pêvajoyeke nû destpêkir, bawer dikim rûpelek nû vebû.

**Rêveberên Iraqê derbarê siyaseta Tirkiyeyê ya Iraqê de, ku Tirkiye xwe têkilî karê wan yê navxweyî dike, rexneyan li Tirkiyeyê dikin. Hûn maf didin van rexneyan û bersiva we ji bo rayedarên Iraqê çi bû?**

Em niha wekî partiya sermuxalefet wiha dibînin ku çewtî di siyaseta derve ya hikûmeta AKPê û bi taybetî siyaseta wê ya derbarê welatên cîran û welatên herêmê de heye. Em di wê baweriyê de ne ku ev siyaset xizmeta armanca pêşdebirina aştî û diyaloga dualî ya bi wan welatan re nake. Girêdanên me yên dîrokî bi Iraq, Sûrî û Îranê re hene û eger siyaseta me ya derve niha gihiştiye vê radeyê, mixabin ev ji ber gavên çewt yên hikûmeta AKPê û birêz serokwezîr e. Em giringiyê didin prensîba bêalîbûnê ya derbarê xwetevlînekirina dualî ya karên navxwe û rêzgirtina hikûmdariyê. Çewt e ku dîplomasiyeke li ser bingeha bawerî û etnîkî were birêvebirin. Ev siyaseta derve ne fêdeyê dide welatê me û ne jî welatên cîran û herêmê. Xizmeta aştî û hizûrê nake.

**Dîtina we ya li ser pirsgirêka Kerkûkê çi ye û divê ev pirsgirêk çawe were çareserkirin?**

Meseleya Kerkûkê pirsgirêkeke navxweyî ya Iraqê ye. Li ser vê pirsgirêkê, beyî ku ziyan bigihije yekparebûn û aştiya navxweyî ya Iraqê, çareserî wê bi rêya gelê Iraqê, diyalogên dualî û aqilê hevpar were pêkanîn. Em dibêjin eger Iraq ji Tirkiyeyê derbarê vê meseleyê de arîkariyê bixwaze, li ser çareseriya meseleyê, divê Tirkiye hemû arîkariya siyasî, dîplomatîk û aborî bide. Mifteya çareseriyê jî di destê gelê Iraqê de ye û em bawer dikin rê jî di diyaloga aştiyane ya di navbera hikûmet û aliyan re derbas dibe.

**Ku CHP bibe desthilardar, bi cîranan re û bi taybetî jî bi Iraqê re wê siyaseteke çawe birêvebibe?**

Rêgaza me ya di vê bareyê de rêgaza "li welêt aştî û li cihanê aştî ye". Wate, xwetevlînekirina dualî ya pirsgirêkên navxweyî û rêzgirtina ji bo karên navxweyî. Bêguman ev nayê wateya bersivnedana êriş û tehdîtên muhtemel yên li dijî welatê me. Lê belê wekî min got, helwesteke me ya siyaseta derve ya pêşiya şerên li welatên cîran û herêmê bigire heye û evê di dema desthilatdariya CHPê de jî wisa be. Di dema desthilatdariya CHPê de wê texrîbatên ku hikûmeta AKPê pêkanîne, bi rêya dîplomasiyê werin sererastkirin. Diyalog û baweriya bi hev ya bi cîranên me re wê dîsa were avakirin. Tirkiye wê di warê têkiliyên bi cîranên xwe re dîsa ji bo hemû welatên li herêmê û dinyayê bibe mînak. Bi têkilî û diyalogên ku werin avakirin, wê aborî û berjewendiyên siyasî yên dualî derkevin asta herî bilind. Iraq, Sûri û Îran wê di vî warî de welatên me yên cîran yên destpêkê bin.

**We çima di bernameya xwe de serdana Hewlêrê nekir?**

Birêz serokwezîr Malikî ev vexwandname ji me re ragihand. Piştî erêkirina me ya vexwandnameyê, dema serdanê hate diyarkirin. Bernameya serdanê xwediyê dawetnameyê birêz Malikî û wezareta karên derve amade kir. Em beşdarî bernameya ku wan amade kiribû bûn.

**Eger hikûmeta Herêma Kurdistanê we vexwîne, hûnê di demeke nêzîk de serdana Hewlêrê jî bikin?**

Bêguman ku vexwendnameyeke bi vî rengî ji hêla serokê birêveberiya herêma Iraqê ya kurd, birêz Mesûd Barzanî, ji me re were rêkirin, emê binirxînin. Emê bi vexwendineke birêz Barzanî ya bi vî rengî, bi serdana Hewlêr û Silêmaniyê kêfxweş bibin.

**Hûn asta têliyên Tirkiyeyê yên bi Herêma Kurdistanê re çawa dinirxînin?**

Em giringiyê didin makezagona Iraqê û yekparebûna Iraqê. Divê têkilîdanîna bi herêma Kurdistana Iraqê ya di vê çarçoveyê de bi pêş bikeve û rêzgirtin ji karên navxweyî re werin nîşandan. Tirkiye di dema derbasbûyî de her demî arîkarî da herêma Kurdan a Iraqê û di nava diyaloga germ de bû. Îro jî, destpêkê em di çarçoveya hizûra hemû gelê Iraqê de, mezinbûna bi istikrar ya herêma Kurdan, bi pêşdeçûna aborî û bilindbûna refaha herêmê kêfxweş in. Diyalog her demê ji pevçûn û şer baştir e û ev yek mirovî ye û giring e.

**Tê plankirin ku di meha Îlonê de li Hewlêrê kongreya netewî ya kurd bicive. Ramanên we yên derbarê vê civînê de çi ne?**

Ez bawer dikim ku kongreya netewî ya kurd, ya ku li Hewlêrê wê bê pêkanîn, bi encam û bi encamnameya xwe ya ku were pejirandin wê bibe konferanseke giring. Bi hêvî me ku konferansa Hewlêrê bi aqilê hevpar û lihevkirineke beşdarên ji çar welatan, Kurdên Tirkiye, Iraq, Îran û Sûriyê, Kurdên birayên me, wê xizmeta bihevrejiyana aştiyane ji bo welatê me û herêma me hizûr û aramiyê bike. Bila xweza, erdnîgarî û dewlemendiya mirovî ne xizmeta şer, çek û mirinê bike, lê bila di xizmeta pêşerojeke bi hizûr de be. Welatê me û herêma me wê li vê erdnîgariyê û li cîhanê bibe girava hizûr û aştiyê. Ez bi hêvî me ku ji vê konferansê û ji vir û pê de jî encameke bi awayekî zelal ji lihevkirinên birfireh re vekirî derkeve. Niha li seranserî cihanê cihê ku şer, tevkujî û bira birayan dikuje ev erdnîgarî ye û bi taybetî erdnîgariya îslamê ye. Ev tablo jî dikare bibe wesîla ku em çewtiyan bibînin û bifikirin ka ev tablo xizmeta kê dike.

**Partiya we wê çavdêrekî rêkê konferansê?**

Li gor ez dizanim niha di rojevê de beşdarbûna partiya me ya bi awayekî fermî nîne. Lê belê heta dema civînê belkî gotûbêj çêbibin û çavdêr werin rêkirin. Di vê bareyê de biryara dawî ya birêveberiya CHPê û organên berpirsiyar yên partiyê ye.

Hevpeyvîn: Kemal Avci
*Ankara*



**Di warê têkiliyên dostane yên welatê Iraqê û birêveberên wê yên bi Tirkiyeyê re, bi vê serdana me pêvajoyeke nû destpêkir, bawer dikim rûpelek nû vebû.**

www.arsivakurd.org

## Hejmara penaberên ji Sûriyê gihişt 2 milyonan



*Li gor daneyên nû yên Komisyona Karûbarên Penaberan ya Neteweyên Yekbûyî (UNHCR), hejmara penaberên ji Sûriyê ji 2 milyonan derbas bû. Neteweyên Yekbûyî (NY) ev karesat wekî "trajediya mezin ya vê sedsalê" bi nav kir.*

*Li gora agahiyên UNHCR, di sala 2012ê de hejmara penaberên ji ber şer reviyan derdora 230 hezar kesan bû. Ev hejmar îsal gihişt 2 milyon kesan. Hejmara koçberên di nava Sûrî de jî derdora 4 milyon û 250 hezar e.*

*Di heman daneyan de tê diyarkirin ku hejmara penaberên ji Sûrî reviyane Misrê 110 hezar, Iraqê 168 hezar, Urdunê 515 hezar, Libnanê 716 hezar û Tirkiyeyê jî 716 hezar in. Herwiha tê diyarkirin ku temenê ji sedî 52yê penaberan di bin 17 saliyê de ye.*

*Ji hêla din ve li Almanyayê nêzîkî 45 hezar penaberên ji Sûriyê dijîn. Li gor agahiyên ne fermî, derdora 20 hezar ji van penaberan Kurd in. Wezîre Karê Hundir yê Almanyayê Hans-Peter Friedrich diyar kir ku Almanya wê 5 hezar penaberên ji Sûriyê werbigire. Digel ku diviyabû heta niha pirraniya van penaberan hatibana, lê belê hejmara kesên di çarçoveya vê projeyê de gihiştine Almanyayê gellekî kêmtir e.*



## Rêveberê polîsê qeza û nahiyeyên Kerkûkê:

# Grûpên tundrew ji hêzên asayişî yên Kerkûkê xurttir in

**Hîwa Husamedîn**
*Kerkûk*

Reveberê polîsê qeza û nahiyeya Kerkûkê Serhed Qadir dibêje ku grûpên tundrew ji hêzên asayişî yên vî bajarî xurttir in. Her dema ku bixwazin darê xwe dihejînin. Heta doza şerê çekdarî yê beramber hêzên asayişî jî dikin.

Statîstîka teqîn, kuştin û revandina welatiyan derdixîne ku roj bi roj rewşa asayişî ya bajarê Kerkûkê ber bi xirabiyê ve diçe. Ti aso jî diyar nabe ji bo başbûna rewşa vî bajarî. Heta ku berpirsên hêzên asayişî jî li vê rastiyê mikur tên.

Serhed Qadir yek ji diyartirîn û navdartirîn berpirsên asayişî yê vî bajarî ye. Ew behsa xurtbûna hêzên tundrew dike û dibêje: "Grûpên çekdar her karekî bixwazin, li her cihekî ku mebesta wan be, dikin. Eger karekî jî nekin, diyar e mebesta wan nîne, lewma nakin. Ev grûp ewqasî xurt bûne. Eger îro teqînekê li cihekî pêk bînin, bo sibehê wek hevrikiyê li heman cihî teqînê pêk tînin."

Di heman babetê de Serhed Qadir dibêje ku "xurtbûna" van grûpan bi xurtbûna karên wan yên îstixbaratî ve girêdayî ye û diyar dike ku ew bi xwe di vî warî de pirr qels in: "Niha şerê îstixbaratî ye û nabe tu hêzeke mezin bicivînî û karekî pêk bînî ku sûd jê nebe. Lê belê divê beriya ku ev otomobîl bên bombekirin, tu bi ser wan de bigirî, ne ku piştî teqînê operasyona asayişî pêk bê."

Li bajarê Kerkûkê 16 dezgehên asayişî kar dikin. Lê hêj nikarin rewşa asayişî kontrol bikin. Plana asayişî ya dawî ya vî bajar pêk tê ji vedana xendekekê li çardorî bajarê Kerkûkê ji bo rêgirtinê li çalakiyên grûpên tundrew. Li gor Serhed Qadir, tevî pirrbûna hejmara dezgehên asayişî tiştekî ji rewşa vî bajarî neguheriye: "Niha pêwîstiya me bi dezgeheke îstixbaratî ya xurt heye, ji ber ku stratejiya karê van grûpên çeteyan guhertiye û rojane di nûbûnê de ye."

Serhed, ku heta niha çend caran li derveyî bajarê Kerkûkê beramberî van grûpan bûye, dibêje ku ew grûp niha weke salên berê li derveyî bajêr karên çekdarî pêk nayînin: "Niha têne di nav bajêr de teqînan pêktînin. Xelkê direvînin. Êrişî ser rêveberiyên polîsên Kerkûkê dikin, ku xurttirîn dezgehên asayişî li Kerkûkê ne. Gefan li parêzgar û rêveberên polîs dikin. Herwiha girtiyan azad dikin. Niha ew xwe venaşêrin û di ronahiya rojê de derdikevin."

Weke ku Serhed nîşan pê da, niha ev grûp li derveyî bajarê Kerkûkê bi taybetî li navçeyên Hewîce, Riyaz û Reşad eşkere bi otomobîlên xwe digerin û çekên giran li ser otomobîlên wan hatine bicihkirin: "Tew gellek caran bi şofêr û cotkaran re nûçeyan ji bo hêzên artêşa Iraqê û polîsan dişînin, bo beramberbûna çekdarî."

### "Wek lîstika bi agir e"

Derbarê arîkariya xelkên başûrê Kerkûkê di aliyê pêdana zanyariyan li ser van grûpan de, Serhed Qadir got: "Eger li başûrê Kerkûkê hêzeke asayişî ya mezin nebe, ku canê welatiyên vî sînorî biparêze, xelkên vî sînorî nikarin arîkariya me bikin. Ji ber ku arîkariya wan bo me wek lîstika bi agir e."

Ev hêzên asayişî yên ku Serhed serperiştiya wan dike, ji parastina rewşa asayişî ya navçeyên derveyî navenda bajarê Kerkûkê berpirs in. Lê rewşa asayişî ya van navçeyan eger ji ya nav bajarê Kerkûkê ne xirabtir be, ne baştir e: "Di salên borî de me ji Hewîce heta zincîra çiyayên Hemrînê pak kir. Lê piştî pêkanîna serokatiya operasyona Dicleyê, bi tevayî rê li ber me hate girtin. Hin caran zanyariyên baş ji me re tên li ser teqîn û kesên xwekuj. Lê divê di destpêkê de em artêşa Iraqê agahdarî van zanyariyan bikin. Ew jî Bexdayê agahdar dikin. Heta em bersivê werdigirin, sûdê wan zanyariyan namîne."

Serhed Qadir ti asoyê diyar nake ji bo başbûna rewşa asayişî li Kerkûkê: "Bi taybetî piştî reva zindaniyên girtîgeha Ebûxirêbê, zanyariyên me yên rast hene ku 12 ji wan zindaniyan hatine nav bajarê Kerkûkê."

Serhed Qadir heta niha çend caran bûye amanca grûpên tundrew. Îsal jî bi sedema teqînekê li ber rêveberiya polîsê Kerkûkê ew birîndar bû. Weke ku ew bi xwe dibêje, heta niha jî rewşa wî ya tendirustî ne li cih e. Navborî eşkere kir ku beriya demekê wî ligel rêveberê polîsê hawarçûnê yê Kerkûkê, Xetab Umer, nameya destjikarkişandinê arasteyî hikûmeta Bexdayê û hikûmeta Herêma Kurdistanê kiriye, "lê serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî razî nebû ku xwe ji kar bikişim û ji min re gotibû pêwîstiya me bi te heye."


Hêvron di gulana borî de li Malaga

Wêne: Mark Haley

> **Ew mirov in germ û arîkarhez in, min hest nedikir ku ez biyanî me di nav wan de, ew te hembêz dikin.**

# Dilfiroz û Hêvron *Erasmusê* tewsiye dikin

Zinar Ala

Ev 26 sal in ku programa Erasmusê derfetê dide xwendekarn, da ku ji bo xwendinê 6-12 mehan li welatên Yekîtiya Ewropayê bixwînin, wisa jî zimanekî nû fêr bibin û çandeke nû nasdikin. Erasmus bernameyeke ji bo xwendekarên zanîngehan, da ku bikaribin ji bo demekê li welatekî din bijîn û bixwînin û wî welatî nas bikin. Herdu keçên kurd yên ji Almanyayê Dilfiroz û Hêvron jî ji vê bernameyê sûd wergirtin û demekê li Spanyayê jiyan.

Dilfiroz (Fatma) Nas ji Şirnexê ye û ev bûn 20 sal ku li Bremenê dijî. Wê beşa xebata civakî (Sozialarbeit) li zankoya Emden/Leer xwendiye û niha di warê arîkarî û şêwirmendiya malbatan de li Bremenê dixebite. Dilfiroz qet ji navê xwe yê fermî Fatma hez nake, lê ji ber pirsgirêkên burokratîk wê heya niha nikarîbû vî navî biguherîne. Hêvron Muhamed jî ji Efrînê ye û ev çar sal in ku li Almanyayê dijî. Ew niha ragihandin û sosyolojiyê li zanîngeha Munsterê dixwîne.

### "Mirovên wir gellekî dilgerm in, vekirî ne û arîkariya însanan dikin"

Di 2011ê de Dilfiroz ji bo şeş mehan berê xwe da Spanyayê: "Destpêkê xwendina li zanîngehê ji me re zor bû, profesor bi lez diaxivîn lê xwendekaran ji me re werdigerandin ser zimanê îngilîzî. Mirovên wir gellekî dilgerm in, vekirî ne û arîkariya însanan dikin. Li wir min tandem bi xwendekarekî spanî re çêkir, ango min almanî fêrî wî dikir, wî jî spanî fêrî min dikir, min dêbavên wî jî nas kirin, ew malbat ji min re bibû weke malbateke dûyem. Niha jî dema diçim bêhnvedana, ez serdana wan dikim." Dilfiroz li Spanyayê bi erkekî din jî radibû: "Min dîroka Kurdan û rewşa perçeyên Kurdistanê ji xwendekaran re şîrove dikir. Ez qet nediwestiyam ji nasandina Kurdan, dema behsa gelê xwe dikim, bîhna min fireh dibe."

### "Dema ez ji Malaga derketim min gellek hêstir barandin"

Hêvron jî îsal şeş mehên xwe li bajarê Malaga derbas kirin, wê li kêleka xwendina li zanîngehê derfet dît ku gellek taybetmendiyên Spanyayê jî nas bike, herwiha germiya xelkê spanî bala wê kişand: "Di dema sê salên min li Almanyayê, min tenê du hevalên alman peyda kirin, li Spanyayê di şeş mehan de bêhtirî deh hevalên min çêbûn. Spanî gellekî vekirîn ne û biyaniyan hembêz dikin, li cihên campingê bi dehan kes dihatin li dor min digerîn, ji bo ku ez ji wan re behsa çanda kurdî bikim. Ew mirov in germ û arîkarhez in, min hest nedikir ku ez biyanî me di nav wan de, ew te hembêz dikin û te dixin nav malbat û civaka xwe. Ez ligel jineke spanî dijiyam, wê ji min re herdem digot 'keça min, tiştek ji te re pêwîst be bêje'. Baş tê bîra min, dema ez Helebê derketim û hatim Almanyayê ez xemgîn nebûm, lê dema ez ji Malaga derketim min gellek hêstir barandin. Ev bûn du meh ku ji wî bajarî dûr ketime û ew bajar û xelkê wî bajarî hêj ji bîra min naçin."


Dilfiroz par di şahiya wergirtina bawernameya zankoyê de

Wêne: Dilfiroz Nas

### "Erasmus çavên mirovan vedike"

Di civakeke patriarkal weke ya kurdî de xwendekarên keç nikarin bi tena xwe dûrî malbata xwe bijîn, lê malbata Dilfiroz nebû kelem li pêşiya wê: "Dêbavên min ji bo xwendinê hemû derî ji me re vekirin, ne bi rêya xwendinê be em nikarin herin dewleteke din. Di dema xwendina zankoyê de, ez li bajarekî din, dûrî malbata xwe dijiyam. Xalê min ji dêbavên min re gotibû çawa hûn keça xwe dişînin ku bi tena xwe bijî. Bila were mala me bijî û ji wir here zankoyê. Lê dêbavên min gotin wî ku baweriya wan bi min heye, bila ez li halê xwe bim û xwendina xwe pêş de bibim."

Dilfiroz şîretê li xwendekarên kurd dike ku fersenda tevlibûna bernameya Erasmusê ji dest xwe bernedin û wiha pê de diçe: "Ez ji hemû xwendekaran re dibêjim ku bila biçin semesterekê yan jî du li welatekî din derbas bikin. Arîkariya ku zanîngeh û dewlet dide xwendekaran têrî leçûnên jiyanê li wan welatan dike. Ezmûna Erasmusê gellekî girîng e ji bo pêşketina şexsî û çavên mirovan vedike."



Kamîran Darouich
Zahnarzt
Seestr. 43
13353 Berlin
Tel.: 030 - 453 80 96
Fax: 030 - 817 02 297
Öffnungszeiten
Mo. - Di. - Do.: 09.00 - 18.00 Uhr
Mi. - Fr.:09.00 - 15.00 Uhr
Sa.: Nachvereinbarung
Reklam


www.arsivakurd.org


Wêne: Azad Baker

# Kewgêrî ye...
## ...li Bişêriyê ...û Almanyayê jî


Wêne: Azad Baker

Ezedîn Guden: Di dîwana me de virr û derew jî nîn in.

Zekî Ozmen

Ezedîn Guden bi eslê xwe ji gundê Kelhoka ser bi bajarê Bişêriyê ya Batmanê ye û ev 28 sal in ku li Almanyayê dijî. Ezedîn niha li bajarê Kleve yê Almanyayê niştecih e û ev 18 sal in ku kewan xwedî dike.

Dema ew li welêt jî dijiya, wî hem kew û hem jî dîkên şer xwedî dikirin. Wê demê ew gellek caran diçû bajarên wekî Mêrdîn û Mêrsînê û dîkên şer dikirîn, weke ku ew dibêje. Lê paşê ew dest ji jiyana li Kurdistanê û xwedîkirina kewan berdide û berê xwe dide Almanyaê. Piştî 10 salên li Almanyayê û bêrîkirina karê xwe yê li gund, ew pê dihise ku li Almanyayê jî kew hene û gellek kes kewan xwedî dikin. Li ser vê yekê ew jî diçe bajarê Guterslohê û li wir çend kewan ji xwe re dikire. Bi kirrîna kewan re, merema Ezedîn Guden bi cih tê. Ew dibêje ku wî demekê 200-300 çêlîkên kewan xwedî dikirin.

**Ez têm cem kewên xwe û em behsa kesî bi xerabî nakin. Di dîwana me de virr û derew jî nîn in...**

### Kewan berdidin hev

Sedema bingehîn ya xwedîkrina kewan a Ezedîn Guden evîna wî ya berdana hev ya kewan e. Ew salê gellek caran û bi taybetî di demsala biharê de civanê bi kewgêriyên din re çêdike û kewan berdidin hev: "Gellek kewgir hene. Bi taybetî ji bajarên cure yên Almanyayê û yên Holendayê xelk tên û em kewan berdidin hev. Em di her civanê de 30-40 kewan berdidin hev. Em carnan ser pere û carnan jî li ser kewan bi xwe dilîzin." Lê Ezedîn her kewekî jî nahewînî û xwedî nake, ew dibêje ku kewê di bin seetekê re şer bike ew xwedî nake û vê henekê jî bi axaftina xwe ve dizeliqîne: "Jixwe ez bi zanebûn xwe ji xwediyên kewên ji yên min baştir dixeyîdînim. Bi vî awayî ez û ew kewên xwe bernadin hev û kewê wî jî zora yê min nabe."

### Gellek Kurd kewan xwedî dikin

Di kozika ku wî gellek rekehên kewan tê de bi cih kirine, derdora 40 kew û çêlîkew hene. Digel ku hemû cîranên wî Alman in jî, ew diyar dike ku heta niha kesek ji xwedîkirina wî ya kewan aciz nebûye: "Ez biharan wan derdixim hewşê. Qebeqeba wan li ser hewşê dikeve. Lê heta niha kesekî negotiye min ku ew ji dengê wan aciz bûne."

Xwedîkerê kewan Ezedîn Guden dibêje ku di rewşên xwezayî de kew nikarin xwe li Almanyayê xwedî bikin, ji ber Almanya sar e. Lewre, weke ku ew dibêje, kewên ku ew dikirin, ji welatên germ tên. Belkî mirov bawer neke, lê weke ku Ezedîn diyar dike, ew ne tena kesê kurd e ku dûrî Kurdistanê, li bajarên Ewropayê keqan xwedî dike, ew dibêje ku gellek kurd jî ji ber heman meraqê li Almanyayê û welatên din ên Ewropayê kewan xwedî dikin.

### Sebra xwe bi kewan tînê

Ezedîn diyar dike ku ew herroj pirraniya dema xwe bi kewên xwe re derbas dike û bi çavekî taybet li wan dinêre: "Ez îşekî nakim. Ku dinya xweş be, ez têm û li cem kewên xwe rûdinim. Wekî sebra min li cem kewên min tê, sebra min li cem însanan nayê. Li her kewekî min navê hevalekî xwe lê kiriye. Ez 15 deqîqan li vî hevalê xwe dinêrim û 20 deqîqeyan li wî hevalê xwe yê din dinêrim... Ma ezê herim cem xelkê çi bikim? Ez têm cem kewên xwe û em behsa kesî bi xerabî nakin. Di dîwana me de virr û derew jî nîn in..."

### Guhê wî li nexweşxaneyê jî li ser kewan bû

Ezedîn beriya demekê nexweş ketibû û 5 heftiyan li nexweşxaneya Essenê mabû. Lê di dema nexweşiyê de jî nikarîbû kewên xwe ji bîr bike û guhê wî li ser kewên wî dimîne. Di wê demê de herdem qêwîtiyê li kurê xwe dike ku hay ji kewên wî hebe. Dema ew li nexweşxaneyê bû, ew biryarê dide ku dema vegere malê, ewê tenê 4 kewan li cem xwe bihêle: "Lê piştî ez vegeriyam malê, li şûna vê yekê, min hejmara kewên xwe zêde kir. Niha jî dema nexweş dikevim, dibêjim ku ezê dev ji wan berdim. Bes piştî sax dibim, ez dikevim nava lêgerîn û peydakirina kewên baş."


Euro Apotheke
Inh. Mahwasch Behroozi
Apothekerin
Bi zimanên almanî, kurdî, farisî, îngilîzî û tirkî em di xizmeta we de ne!
Karl - Marx-Str. 214
12055 Berlin / Neukölln
Tel.: 030 - 767 648 58
Fax: 030 - 767 648 59
m.behroozi@web.de
Kostenloser Lieferservice
Öffnungszeiten
Mo-Fr: 09:00 - 19:00 Uhr
Sa: 09:00 - 13:00 Uhr
Reklam

ZEN-TAX
Steuerberatungsgesellschaft mbH
Navnîşan: Hohenstaufenring 55 • 50674 Köln
Tel.: 0221 – 16 83 17 42 • Fax: 0221 – 16 83 17 43
e-Mail: info@zen-tax.de • web: www.zen-tax.de
» Finanzbuchhaltung
» Lohnbuchhaltung
» Jahresabschlüsse
» Steuererklärungen
» Existenzgründerberatung
» Sonstige Leistungen
» Mihesebeya Malî
» Mihesebeya Heqdestê Karkeran
» Hesabê Salê
» Beyanên Bacê
» Şêwirmendiya Avakirina Kargehan
» Karên Din
Reklam

Münevver Toktaş
Parêzer - Rechtsanwältin
Dadweriya Peymanên Kiryariyê | Kaufrecht
Dadweriya Kirê | Mietrecht
Dadweriya Peymanên tamîrat û nûjenkirinê | Werkvertragsrecht
Dadweriya Ticaretê û Şîrketan | Handels- und Gesellschaftsrecht
Dadweriya Malbatî | Familienrecht
Dadweriya Trafîkê | Verkehrsrecht
Dadweriya Peymanên geşt û guzarê | Reiserecht
Dadweriya Birêvebirinê | Verwaltungsrecht
Dadweriya Mayîna li Welatekî | Aufenthaltsrecht
Am Justizzentrum 3, 50939 Köln
Tel.: 0221 16873630 • Fax: 0221 16873631
Info@kanzlei-toktas.de • www.kanzlei-toktas.de
Reklam


www.arsivakurd.org


Vera Beaudin Saeedpour



# Mûzexaneya Kurdî ya New Yorkê li benda arîkariyê ye

Ergulen Toprak
*New York*

Mûzexaneya Kurdî ya bi navê "Koleksiyona Vera" ya li zanîngeha Binghamtomê ji hêla Aynur de Rouen ya ji Tirkiyeyê û asîstanê wê Erdem Ilter ve tê birêvebirin. Herdu birêvebir jî projeyan derbarê mûzexaneyê de amade dikin û li benda arîkariya akademîsyen û xêrxwazane.

Damezrênera mûzexaneyê Vera Beaudin Saeedpour, ku amerîkî ye, piştî bi ciwanekî kurd yê ji Rojhilatê Kurdistanê re dizewice, heta dawiya temenê xwe bi pirsa kurdî re mijûl dibe. Vera herwiha ji ber awayê danasîna têgeha kurd, ferhenga Oxfordê mecbûr dike ku lêborîne bixwaze.

Mûzexaneya Kurdî, ango Koleksiyona Vera, ji Adara 2011ê ve tê pêşandan. Di pêşangehê de cil û berg, mehfûr, amûrên cûre yên mîna yên mûzîkê, aksesûar û pirtûk hene.

### Çîroka Vera ya naskirina ciwanê kurd

Vera Vermontlu jineke cihû ya amerîkî ye. Zewaca xwe ya yekemîn bi Frensiyekî mîmar yê ji Kanada (hê jî dijî) re dike. Pênc zarokên herduyan bi hevre çêdibin. Dûre jî dema zaroka Vera ya herî biçûk 9-10 salî ye, ew dev ji hev berdidin û bi herdu zarokên xwe yên biçûk re li New Yorkê niştecih dibe. Ew li zanîngeha Columbia dest bi xebata xwe ya doktorayê dike û di nava saziyên sivîl de dibe kesayetiyeke çalak. Rojekê dizek dikeve mala wê û li ser vê yekê Humayum yê kurd yê ji Rojhilatê Kurdistanê, ku di heman avahiyê de dimîne, arîkariyê didiyê. Bi arîkariyê têkiliya di navbera wan de germ dibe û veduguherê evînê.

### Ji penceşêrê rizgar dibe lê...

Wê demê temenê Vera nezîkî 50 ye û Humayun jî hêj nebûye 30 salî. Humayun di sala 1976ê de bi arîkariya malbata xwe ji bo beşa endezyariyê li zanîngeha City University of New York bixwîne tê Amerîkayê.

Di destpêka şoreşa Îslamî ya Îranê de ew bi nexweşiya penceşêrê dikeve. Vera jî bi rêya hikûmetê malbata wî dide anîn û tehlîlên xwîna wan li Seattlê tê kirin, ji bo binêrin ka xwîna wan li wî tê yan na. Ew bi vî awayî ji nexweşiya penceşêrê rizgar dibe lê belê ew piştre ji ber nexweşiya zatûre jiyana xwe ji dest dide. Wê demê di pêvekeke kovareke li Seattle de 10-15 rûpel derbarê jiyana Humayun ya li derveyî welêt û rewşa kambax ya malbata wî de têne weşandin.

Piştî hevjînê Vera yê kurd jiyana xwe ji dest dide, êdî ew jiyana xwe dide pirsa kurdî. Ew ji wê demê û pê de mala xwe wek mûzexaneyekê radixîne û ji ber rewşa wê ya aborî jî nebaş e, arîkariya xêrxwazan jî qebûl dike.



### Wê kir kû ferheng lêborînê ji Kurdan bixwazin

Wê demê di gellek ferhengên bi nav û deng de civaka kurd wekî civakeke "hov" û "civakeke şerxwaz" dihat nîşandan. Ew bê rawestan nameyan ji ferhengên mîna The Scribner-Bantam English Dictionary, Random House Dictionaries, Oxford English Dictionaries re dinivîse û dixwaze naveroka vê têgînê sererast bikin û dide zanîn ku nabe gelek bi vî awayî were danasîn. Li ser vê yekê hinek ferheng danasîna xwe ya Kurdan sererast dikin. Ev nameyên Vera jî di koleksiyonê de peyda bidin.

Wê herwiha ji medyaya amerîkî û ya biyanî re jî gellek nameyên derbarê pirsa kurdî de rêkirine. Edîtorên kovar û rojnameyên mîna Foreign Affairs, London Weekend TV, Cultural Survival Inc. CBC News, Zed Press, The New York Times, The Economist, Newsweek, Washington Post û Wall Street Journal bersivnameyan ji Vera re rêdikin. Ew bi vê yekê jî nasekine, herwiha dîrokzan û serokê KNKê Îsmet Şerîf Vanlî jî ji bo konferansekê vedixwîne Amerîkayê.

### Di ambulansê de wesiyeta xwe dike

Ji bilî van xebatên wê, ew bi gellek akademîkerên li ser pirsa kurdî xebatê dikin re jî dikeve nava têkiliyan. Herwiha bi gellek Kurdan re jî hevpeyvînan çêdike. Yek ji van jî bi serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî re bû. Ew hevpeyvîn niha li cem keça Vera ye û ewê wê jî di demeke kurt de radestî koleksiyonê bike. Wê demê civaknas Îsmaîl Beşîkçî di girtîgehê de bû û Vera ji bo serbestberdana wî bangê li Rêxistina Efûya Navnetewî (AI) dike ku kampanyayekê bide destpêkirin.

Herdu kurên Vera yên ku wê mezin kiribûn jî bi pirsa kurdî re mijûl dibin. Kurê wê Adam li Swîsre, Frensa û zanîngeha Sorbonnê beşdarî dersên zaravayê soranî dibe. Dema Vera bi temen dibe, ew digel koleksiyona xwe êdî li cem kurê xwe yê li paytexta eyaleta New Yorkê, Albany, niştecih dibe. Li wir jî, beriya ku bimire, biryarê dide ku koleksiyona xwe bibexşîne zanîngeha Binghamton a Albany. Ew di ambulansê de li ber mirinê dibêje keça xwe: "Pirtûkxane û koleksiyona min bibexşînin zanîngeha Binghamtonê".

### Mûzexane li benda arîkariyê ye

Niha jî birêveberên "Koleksiyona Vera" beşdarî konferansan dibin û wê bi akademîsyenan didin nasîn. Herwiha ew di nava xebata veguhestina wêneyan a dijîtalkirinê de ne. Bi taybetî hewldana wan a berhevkirina pirtûk û arşîvê berdewam dike û bang dikin ku xelk di vî warî de piştgiriya wan bikin. Koleksiyon ji bo kesên dixwazin xebatên akademîk derbarê Kurdan de bikin xwedî çavkaniyên berfireh e.

### Xwendekarên tirk bertek nîşan dan

Hê ji destpêkê de, dema zanîngeh biryarê dide ku cihekî taybet ji bo "Koleksiyona Vera" terxan bike, gellek xwendekarên tirk bertekan nîşan didin. Herwiha wê demê birêveberiya zanîngehê jî derbarê civaka kurd û pirsgirêka kurdî de ne zêde agahdar bû. Ji ber wê demê li zanîngehê tenê haya Aynur Rouen, ya ku di beşa "digital collection" de kar dikir, ji pirsa kurdî hebû, xebata mûzexaneyê bi hêviya wê ve tê hiştin. Herwiha birêveberiya zanîngehê jî xwendekarên tirk îqna dikin ku bertekên xwe daxînin.


Erdem Ilter





## Humeyra bi kurdî

Ebdilrehman Bêlaf Berzencî, ku dora 1000 helbestên wî ji aliyê stranbêjên kurd ve hatine strandin, ragihand ku wî tekstek ji bo stranbêja navdar ya îranî Humeyra nivîsandiye.

Ebdilrehman Bêlaf di rûpela xwe ya Facebookê de belav kiriye ku helbesteke xwe daye hunermenda navdar a farisî Humeyra. Bi gotina Bêlaf, hunermend Celîl Endelîbî awaza stranê daniye û biryar e Humeyra wê di Newroza bê de bistirê.

Ev cara yekê ye ku Humeyra bi zimanê kurdî straneke bêje. Ew niha li Amerîkayê, li Los Angelesê dijî.



## Dilê Armîk û Anîs bi kurdî û îngilîzî

Herdu stranbêj Armîk û Anîs mijûlî tomarkirina straneke ne, bi herdu zimanên îngilîzî û kurdî.

Armîk derbarê vê berhema xwe ya nû de ji Rûdawê re daxuyand: "Dengê Dil navê berhema me ya herî nû ye, ku ji têksta Şerare ye û ji awaza min e û karê tomarkirin û klîpê jî li Tehranê jê re tê kirin. Herwiha stran bi herdu zimanên kurdî û îngilîzî ye."

Armîk got jî: "Di berhem de behsa evîna du kesan tê kirin ku bi baweriya wan jiyana wan bêyî hevdu her nebê çêtir e. Niha çaverê me ku Anîs vegerê Îranê û em bi hev re vê stranê tomar bikin."

# *Kurdistan* ket nav welatên serbixwe



**Hewlêr (Rûdaw)** – Herdu xwendekarên kurd yên bi navê Kurdman Mihemed Elî û Aram Qadir Koyî ev du sal in ku hewl didin ala Kurdistanê li zanîngeha xwe, li zanîngeha Oregon State li eyaleta Oregon li Amerîkayê, bilind bikin. Dawiya dawî jî hewldana wan çû serî û biserketin.

Ew herdu xwendekar dibêjin çend caran wan serdana ofîsa rêveberiya giştî ya salona konferans û semînaran li wê zanîngehê kirine, da ku ala Kurdistanê wek ya welatên serbixwe tê de bê hildan. Kurdman ji Rûdawê re got: "Ew zanîngeh tenê ala wan dewletan hildide ku serbixwe ne. Piştî du salan ji hewldanan, berpirsên zanîngehê razî bûn ku ala Kurdistanê jî li tenişta ala welatên serbixwe bê hildan."




Iraqi airways الخطوط الجوية العراقية

Hin- und Rückflug 520,00 €

Gepäck bis 40 kg FREI

Montag Bagdad - Frankfurt Frankfurt - Erbil

Dienstag Erbil - Düsseldorf Düsseldorf - Sulemaniya

Mittwoch Sulemaniya - Düsseldorf Düsseldorf- Erbil

Donnerstag Erbil - Fankfurt Frankfurt - Bagdad

Frankfurt
Baselerstr. 35 - 37
60329 Frankfurt/M
Tel:
+49 69 6959 737 0
Fax:
+49 69 6959 737 30
Hotline:
+49 176 64 304 457
Email:
fly@iraq-travel.eu

Düsseldorf
Düsseldorf Int. Airport
Terminal 1, Hall B
Tel:
+49 211 169 851 90
Fax:
+49 211 169 851 91
Hotline:
+49 157 39 404 529
Email:
dus@iq-airways.eu

www.iraq-travel.eu & www.iq-airways.eu

## Endamê berê yê Konseya Serokayetiya PKKê, Nizamedîn Taş (Botan):



# Eger gerîlla bi tevahî vekişin, careke din parçebûn di nav PKKê de rû dide

Endamê berê yê Konseya Serokayetiya PKKê Nizamedîn Taş (Botan) û serokê Partiya Demokrat a Welatparêzên Kurdistanê (PWD) di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de behsa “dijminatiyên” PKKê li hember kadroyên jê cudabûyî dike. Taş herwiha gunehê plandanîn û fermandana cîbicîkirina êrişa li ser endamên partiya wan di roja 23.08.2013ê li bajarokê Koyê dixe stuyê hevserokê Konseya Giştî ya KCKê Cemîl Bayik û wekî din jî bi tundî Bayik tawanbar dike.

- Em ji bo kongreya neteweyî nehatin vexwendin, lê CHP hate vexwendin.
- Cemîl Bayik hewl dide proseya aştiyê têk bibe.
- PKK siyaseta zêdekirina dijminan û kêmkirina dostan dike.

**Rûdaw: Ji ber çi PKK di vê demê de ku Kurd mijûlî lidarxistina kongreya neteweyî ne, hewla kuştina we dide?**

**Nizamedîn Taş:** Li gor zanyariyên me, beriya mehekê plana vê tawana xwe danîne. Piştî kongreya KCKê, konseya giştî û PKKya kûr biryara kuştina me dan. Lewma jî hêzên taybet şandibûn kampa Mexmûrê. Di nav wê hêzê de tîmek ji bo wênegirtin û komkirina zanyariyan li ser me şandin derdora malên me. Li gor mikurhatina wî kesê ku bi birîndarî hatiye girtin, ferman lê kirine ku zarokên me jî bikujin. Ew zanyariyên ku ji Qendîlê gihiştin me, heman tiştî piştrast dikin. Ew zanyariyên ku ji jêderên YNKê jî gihiştine me, hemû dibêjin ku ew hewldan hewldana qirkirina çend malbatan bû, bêyî ku cudahiyê di navbera zarok, jin û mêran de bikin. Ewên ku fermana vê komkujiyê dane, gotine divê qirkirina wan ji kesên din re bibe pend û îbret. Em ji vê helwesta PKKê şaş mane, ji ber ku wan di kongreya xwe ya dawî de biryar dan ku li wan kes û grûpên ku ji PKKê cuda bûne biborin. Niha em ber bi kongreya neteweyî ve diçin. Hemû partiyên ku dijminê hev in, bi hev re gotûbêjan dikin, ji aliyê xwe ve jî PKK pêşengiya vî karî dike. Hewldana cîbicîkirina planeke bi vî rengî, di vê demê de, xeyala her kesî mijûl dike. Gava em ji vê quncikê li bûyerê dinêrin, bêwate ye. Lê lojîka PKKê van rastiyan nabîne. PKK dibêje di 1ê Îlona 2013ê de qonaxa çekdarî derbas bûye, ev di nav PKKê de kêşeyan derdixe. Pirsyarên weke ji ber çi me 30 salan şer kir, destkeftên wî şerî çi bûn, dibin rojeva Qendîlê. Di wê proseyê de hejmareke zêde ya kadro û endamên PKKê dilteng dibin, serkirdayetiya nû ya PKKê naxwaze ev prose bi pêş bikeve. Li ser fermana Ocalan neçar bûn ku qebûl bikin. Eger şer bi yekcarî bi dawî bê û hemû hêzên çekdar vekişin, careke din parçebûn di nav PKKê de rû dide. Lewma eger ew plana wan biçûya serî, careke din kesî di nav PKKê de cesaret nedikir ku cuda bibe. Bi wê planê dixwestin kesên li derveyî PKKê qir bikin. Dîroka kiryarên Cemîl Bayik di vî warî de pirr dewlemend e. Faktoreke din a vê planê di vê demê de, girêdayî siyasetkirina me bi awayekî aktîf e.

**PKK çima ji we ditirse?**

Pirraniya kesên ku îro di nava şoreşa kurdî de ne, nemaze ciwan, bi rêya me şoreş nas kirin û pêwendî pê re danîn. Di nav serkirdayetiya îro ya PKKê de, ji bilî kesekî du kesan, kes di nav de nîne ku çûbe Bakur û şer kiribe. Fermandarên siyasî û leşkerî yên ku li Bakurê Kurdistanê şer kirine, pirraniya wan bi me re ne. Gel dibêje îro hûn dibêjin pirsa kurd bi siyasetê çareser dibe, lê ew serkirdeyên ku ji we parçe bûne, beriya 10 salan ev yek digotin. Baş e, eger wiha ye, ji ber çi di hundirê wan 10 salan de we bi hezaran gerîlla dan kuştin? Dîsa beriya 10 salan, gava me digot pirsa kurd bi siyasetê çareser dibe, di naveroka siyaseta me de kurdayetî û Kurdistan hebûn, lê îro di nav siyaseta ku dimeşînin de ew yek nayên dîtin, ew ji lêpirsîna gel ditirsin.



**Hûn dibêjin hûn dij-jehra PKKê ne, rast e?**

PKK pirr baş dizane ku zemîna kurdayetî û Kurdistanî di naveroka me de heye. Hêj me destê xwe nebiriye wê zemînê, hewla qirkirina me didin. Qirkirin jî bi awayekî pirr hovane, ku cudahiyê nexe navbera zarok û mêran. Plankerê wî karî Cemîl Bayik e, ev plan di dema girtina wî de wek tawana şer tê wesfkirin. Baş e, çawa kesek ku xwe ji bo proseyeke siyasî amade dike, vê planê saz dike? Bi baweriya min kesekî ku bixwaze di nava proseyeke siyasî de rolekê bilîze, ne pêkan e vê planê deyne. Bayik dixwaze proseya aştiyê beravêtî bike. Tiştê ku di mejiyê Bayik de asê dimîne, mirineke serbilind e. Di nav xwe de gotûbêjê dikin, dibêjin dewleta Tirkiyeyê Ocalan xistiye jêr destê xwe, dixwaze bi rêya wî bigihije armancên xwe, em vê yekê qebûl nakin. Dîsa Îran jî roleke xerab di vê meseleyê de dilîze. Fişaran li ser Bayik dike. Hikûmetê jî peymana xwe ya bi Apo re di dema wê de cîbicî nekir. Yanî peymana Apo û dewletê careke din beravêtî dibe. Ji pêşiya proseyê de, biryar bû heta Îlonê hemû tişt xelas bibe, lê ji nû ve Cemîl Bayik dibêje heta 15ê Cotmehê vekişîna gerîllayan xelas nabe. Êdî zivistan bi ser de tê, wiha jî PKK heta bihara bê nikare vekişe. Heta wê demê jî çend faktorên din jî derdikevin holê, dibe ku proseyê beravêtî bikin.

**Çi cudahiyek di navbera plana kuştina we û kuştina Kanî Yilmaz de heye?**

Kanî Yilmaz xwe amade dikir ku here Ewropayê, PKKê hest pê kir, tê texmînkirin MITê zanyarî dabin PKKê. Wê demê karê me bi tîn û germ bû. Kanî Yilmaz li Ewropayê naskirî bû. Di nav cemawerê kurd de li Ewropayê hezkirî bû, eger gihiştibûya Ewropayê, giraniya wan ya rêxistinî diguherî. Lewma beriya ku herê, ew kuştin. Ango bi kuştina Kanî, rê li ber me girtin ku em li Ewropayê bihêz bin. Îro jî li Bakurê Kurdistanê proseyeke nû destpêdike, em jî destê xwe dixin nav wê proseyê. Beriya ku em destê xwe dirêj bikin, PKKê hewl da destên me bibirre.

**Çima hûn dijmintiya PKKê dikin?**

PKKê Kanî Yilmaz, Hîkmet Fîdan, Sîpan Rojhilatî, Kemal Efrîn û sê hevalên me yên din li Efrînê kuştin. Ango 7 hevalên me kuştin. Lê me bersiva PKKê neda. Ne ji ber lawaziya me, lê me xwest çanda kuştinê nemîne. Di salên piştî cudabûna me ji PKKê de, em bi vê lojîkê tevgeriyane. Gava Kanî Yilmaz hate şehîdkirin, hêza me hebû ku em bi dehan kadro û serkirdeyên PKKê bikujin. Yên ku di nava şer de ezmûna wî hebû, fermandar bûn, em bûn. Ne ew bûn. **Li vir dipir-**

✔ Piştî kongreya KCKê, konseya giştî û PKK ya kûr biryara kuştina me dan.
✔ PKK xwest zarokên me jî bikuje.
✔ Bi kuştina Kanî, rê li ber me girtin ku em li Ewropayê bihêz bin.



sim: Kî dijmintiya kê dike? Lewma em ji PKKê cuda bûn. Ji ber ku baweriya me bi dijmintiya partiyên din nebû. Me ji wan re got ev kar bi dijmintiya partiyên din naçe serî. Di heman demê de dibêjim em ne alternatîva PKKê ne. Lê belê PKK ji me ditirse û dibêje ew dibin alternatîva me. Karvedana wan her çi be, em bi lojîka dijminatî û alternatîva PKKê siyasetê nakin. Lojîka me lojîka çareserkirina kêşeya kurdî ye, li Bakur. Bihara erebî bûye payiza erebî. Em hewl didin ev bihar bibe bihara kurdî. Eger tevger ne guncaw ba, Başûrê Kurdistanê rizgar nedibû. Çend milyon Kurdên rojava mijûl in ku pêkhateyekê wek nîvdewlet pêk bînin. Êdî ev tevger di ber berjewendiya Kurdan de ye.

**Ji bo ku ev êrîşa PKKê ya vê dawiyê, weke hûn dibêjin, êrîşa dawî be, hûnê çi bikin?**

Em piştgiriya pêşxistina tevgera Kurdistanî dikin. Eger PKK ber bi Kurdistanîbûnê ve bizîvire, gellekî baş e. Herwiha pêwîst e hemû Kurd piştgiriya wê bikin. Lê diyar e di nav PKKê de rê bi vê nayê dan. Karîna zîvirandina serokên vê partiyê jî nîne.

**Îro PKK li Rojava hêzeke mezin e. Dîsa li Bakur, bi taybetî piştî destpêkirina proseya aştiyê, dibe ku bibe hêzeke xwedî bandor. Hûn nabînin ku ev xurtbûn vê partiyê ber bi tiştekî ve bibe?**

PKK li Rojava bi awayekî li xwe dinêre ku serketî ye. Dozdariya damezrandina nîvdewletê dike. Lê ez dibînim ku li Rojava bi awayekî gellekî şaş li xwe dinêre û kar gihîşte wê radeyê ku rê nade partiyên din ên kurdî ku kar bikin. Bêguman ev ne siyaseteke jîrane ye. Mao Zedong dibêje "Siyasetmedarê jîr ew e yê ku hejmara dostên xwe zêdetir dike û dijminên xwe kêmtir dike." Lê PKK bi berevajî vê, dostên xwe têk dibe û hejmara dijminên xwe zêde dike. Heta asta şovînîzmê bi partîzaniyê ve girêdayî ye, ti pêwendiya wê bi pirsa neteweyî ve ne girêdayî ye. Ev lojîk jî lojîkeke şoreşgerî ye, dûrî neteweyiyê ye. Ziyanê jî digihîne Kurdan û PKKê.

**We behsa giringiya kongreya neteweyî kir. Hûn dikarin di kongreya neteweyî de gilî li PKKê bikin?**

Pêwendiyên me ligel Kurdên Rojhilat, Rojava û Herêma Kurdistanê hene. Li Kurdistanê çend partiyên siyasî û kesayetiyên niştimanperwer hene. Tev ji me re dibêjin, hûn ji me bêhtir babetî beşdarbûnê ne, di kongreya neteweyî de. Ji pêvî PKKê û hevpeymanên wê, ti partî beşdarbûna me qedexe nake. PKKê deriyê Sêmalka li ber me girt. Başdariya me di kongreya neteweyî de ji bo wan hêla sor e. Çima? Ji ber ku lojîka 30 salên wan pûç dibe. Ev kongre ne kongreya PKKê ye. Eger kongreya wan ba, doza beşdariya me nedikirin.

Kongreya Kurd û Kurdistaniyan e. Bila ji Kurdistanê her kes destê xwe deyne ser bextê xwe û bêje kî ji me bêhtir babet e ku başdarî vê kongreyê bibe. Bêhtir ji 30 salên temenê xwe me li çiyê û di nav zehmetî û şer de derbas kir. Cemîl Bayik nikare ji min re bêje van 30 salan hûn li kû bûn? Lê em dikarin ji Cemîl Bayik bipirsin tu di van 30 salan de li kû bûyî? Te fermandariya kîjan şerî kir? Çend kesan nas dikî ji cemawerê çalakvan ên Bakurê Kurdistanê, ku dynamoya hêza PKKê ne? Te çend kes anîne nav şoreşê? Lê em dikarin bi belge ji Bayik re bêjin, ji Colemêrgê heta Amedê, ji Mêrdînê heta Dêrsim û Serhedê, em van kesan tevan nas dikin ku dynamoyên çalakvan in û di rêya me re pêwendî bi şoreşê re kirin.

Bi şayetiya hezarên Kurd û Kurdistaniyan, ji Bayik re dibêjim me şer kir û em fermandar bûn. 25 salan li çiyê, bêyî ku çavên me bi bajarekî bikevin. Bêyî ku Bayik û hevalên wî çavên wan bi Bakur ketibin. Kongreya neteweyî li ser bingeha destketiyên wî şerê ku me fermandariya wî kiriye tê lidarxistin. Bi sedan û hezaran ewên ku dest û lingên wan di şer de çûn ligel me ne. Çima îro kongreya neteweyî tê lidarxistin? Çima beriya 20 salan ev kongre nehate lidarxistin? Zemînsaziya lidarxistina kongreyê li ser dîroka şer pêk hat.

Em bûne hokarê vê kongreyê. Yên ku ev stratejî di nav PKKê de pêş xistin, yên ku li kongreyê xwedî derket, dîsa em bûn. Lê di dawiyê de, em li derveyî kongreyê dimînin. Gelo dadperwerî di vê helwestê de heye? Her Kurdekî ku hinek bext û hestê wî yê dadperwerî hebe, vê yekê qebûl nake. Di vir de ji serperiştên kongreya neteweyî re dibêjim, ku eger hûn vê qebûl dikin, ti gotin namîne ku bêjim. Eger komîteya amadekariya kongreyê, eger PDK û YNK û partiyên din, hinek bextê wan hebe, nabe têkevin bin guşara PKKê û me li derve bihêlin. Dîsa eger PKK hinek bextê wê heba û rêzdariya wê ji dîroka wê re heba, ev helwest nedida.

PKK bi vê helwestê gazinan ji dîroka xwe dike. Boykotkirina me boykotkirina dîroka PKKê ye. Yê ku dîroka xwe bide mandelê, siberoja wî nîne. Kongreyê dozdariya Îranê kiriye. Parlementerên CHPê, ku pêwendiya wan bi Kurdîtiyê re nîne, hatine dozkirin. Parlementerên AKPê hatine dozkirin. Hin kes beşdariyê di vê kongreyê de dikin ku bi qasî cixareyekê sûda wan ji bo Kurdan nebû. Lê yê ku pêşengî ji bo bîrokeya sazdana kongreyê kiriye, tê de beşar nabe. Ewên ku heta îro gazin ji Kurdan dikirin, PKKê ligel Hizbullahê bi balte hev dikuştin, lê Hizbullah beşdarî kongreyê dibe. Lê yê ku hemû jiyana xwe daye û Kurdistan gihandiye vê astê, beşdar nabe.

**Fikrekî we nîne ku hûn dozê li kongreyê bikin ku lêkolînê li ser hewla kuştina we bike?**

Di nêrîna min de, erkê sereke yê vê kongreyê girtina rola partiyên siyasî û vekirina vîna kurdî ye. Erkekî din mehkûmkirina awayê kuştin û revandinê ye, ku PKK bê mecbûr kirin ku rêza yasayan bigire. Wek mînak hikûmeta Herêma Kurdistanê helwesteke pir reyalîst di vê pirsê de nîşan da, dema ku dibêje meydana Kurdistanê ne meydana şer ji bo kuştin û hisabatên aliyan. Ev pencerakêşan e ji bo ser vê rastiya ku pêwîst e bê gotin. Hêvîdar im kongreya neteweyî jî heman vînê nîşan bide û rê nede PKKê ku vî karî dubare bike. Divê komîteya amadekariya kongreya neteweyî ji PKKê re bêje vî karê şêt rabigire. Xêr e, çima tu di vê tevgerê de hewl didî wan bikujî? Goran û YNK ji hev cuda bûn. PDKÎ cuda bûn. Lê îro herdu ligel hev weke bira rûdinin û danûstandina kêşeyên xwe dikin. 30 partiyên kurdî li Sûriyê hene, ku hemû ji laşê yek partiyê cuda bûn, lê ligel hev rûdinin û karê hevbeş dikin. Lewma em doz dikin ku vîna kongreya neteweyî jî li beramber vî karî be, weke vîna cemawer û partiyên siyasî û hikûmeta Herêma Kurdistanê be.

**Hevpeyvîn:**
**Erdal Colemêrgî** *Koye*

Endamekî serokatiya PWDê:

## Ewên teqîn kirin ji kampa Mexmûrê hatibûn

**Sehîn Muftî** *Koye*

Li qezaya Koyeyê li Başûrê Kurdistanê şer û pevçûn di navbera çend çekdaran û endamên ji PKK cudabûyî derket. Çekdarek birîndar bû. Endamekî Partiya Welatparêz a Demokrat a Kurdistanê (PWD) dibêje ku çekdar ji Kampa Mexmûrê hatibûn.

Demjimêr 7ê êvara 23.08.2013ê lihevteqandin di navbera wan endamên ku sala 2004ê ji PKKê cuda bibûn û çend çekdaran de derket. Pirraniya van endamên ji PKKê cudabûyî berê berpirsên bilind û fermandarên vê partiyê bûn. ji ancama vê pevçûnê çekdarek bi navê Mehmûd Yildirin birîndar ket destê endamên berê yên PKKê. Piştre ew kes radestî asayişa bajarê Koye hat kirin.

Endamên ji PKKê cudabûyî niha bêçek mijûlî karê siyasî ne, di çarçoveya partiyeke siyasî de, bi navê Partiya Welatparêz a Demokrat a Kurdistanê (PWD). Yekî ji serokên vê partiyê Ekrem Dêrsîmî ragihand: "Ev hersê çekdarên ku êrişî ser malbata cudabûyî kirin, ku niha niştecihên Koyê ne, ji kampa Mexmûrê hatibûn şandin û bi niyaz bûn ku komkujiyek di nav vê malbatê de pêkbînin, li gor mikurhatina wî çekdarê birîndar ê ji aliyê asayişê ve hate girtin."

Endamê serokatiya PWDê Ekrem Dêrsîmî ji Rûdawê re herwiha got: "Ev ne cara yekem e ku ji aliyê baskê leşkerî yê PKKê ve êrişî ser hevalên me dibe. Çend hevalên me jî ji aliyê PKKê ve hatine şehîdkirin." Dêrsîmî rexne li siyaseta PKKê kir, ku her endamek ji vê partiyê cuda bibe, ji aliyê wan ve mafê jiyana wî namîne. Herwiha Dêrsîmî kuştina Kanî Yilmaz, Sîpan, Rojhilat û Kemal Efrînî wek mînak anî, ku wek wan ji PKKê cuda bibûn.

Ekrem Dêrsîmî dibêje "PKKê xwest bi vê çalakiya xwe peyamekê bide kongreya neteweyî, ku dihat plankirin nîvê vê mehê li Hewlêrê bihata lidarxistin. Ev peyam ji bo ku me bitirsîne bû û bêje kesê ku ne bi me re be, dijmin e." Derbarê beşdarkirina PWDê di kongreya neteweyî de, Dêrsîmî got: "PKK her ji destpêkê ve bi merc beşdarî kongreya neteweyî dibe. Yek ji mercên wê nebeşdariya PWD bû."

Ji bo bidestxistina zanyariyên bêhtir li ser wî çekdarê ku ji aliyê asayişa Koyê ve hate girtin, Rûdawê pêwendî bi rêveberê asayişa Koyê re danî, lê bi sedema nebûna rezamendiya yên jor û hestyariya vê dozê, rêveberê asayişa Koyê ne amade bû ku ti daxuyaniyê li ser vê bûyerê bide. Tevî ku polîsê vê qezayê jî ragihandin ku ti kesî gilî li ser vî şerî nekiriye. Ji rêveberiya polîsê Koyê, efserê Nîzam Ezîz ji Rûdawê re got: "Ti zanyariya me li ser vê bûyerê nebû. Kesî jî gilî tomar nekiriye heta em lêkolînê bikin û bişopînin."



Derbarê tawanbarkirina PKKê bi vê êrişê, berdevkê Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Ehmed Denîz di pêwendiyeke telefonî de ji Rûdawê re got ku ew ji dûr û nêzîk ve ne agahdarên vê bûyerê ne û tenê di ragihandinê de bihîstine. Denîz red kir ku ev kar ji siyaseta PKK be, lewma bi tevayî ev tomet red kir.



# Êrişa li ser Sûriyê û bîjîyên emperyalîzmê

**Selahattin Çelik**

Bi bilêvkirina operasyonekê ji aliyê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) ve, hinek dest bi reqsê, hinek jî bi şingirêdanê kirin. Gefa operasyonê niha bi gotinê bimîne jî, êdî li seranserê dinyayê bûye mijara sereke.

### Bi nêrîna yên li dijî operasyonê

Qesta min Rûsya û Îran e. Şiroveyên vê eniyê: "Tehran dixwaze gaz û petrola xwe di ser Iraq û Sûriyê re bi lûleyan bigihîne Deryaya Spî. Lê eger desthilata Baasê birûxê, ev plan xera dibe, di cihe Îranê de Qeter dixwaze heman tiştî bike. Şam birûxê, Tehran di rêzê de ye. Tehran bikeve, Çîn ji petrolê dûr dikeve, derdora Rûsya tê girtin û dora tevlîhevkirinê tê welatên rasterast cîranên Rûsyayê, weke welatên Qefqazya û Asyaya Navîn. Ji bo DYA û hevalbendên wê, Rûsya depoya semyanên xwezayî, Çîn jî ya karê erzan e… Cîhadî, bîjîyên emperyalîzmê ne…"

Şiroveker, bêyî liberçavgirtina mafên wan yên neteweyî, bi awayekî nerênî cih didin Kurdan jî: "Bi petrol, gaz, av, erdê fireh û asê û bi gelheya mezin, dixwazin Kurdistanê ava bikin û wê bixin cihê Îsraîla westiyayî."

Îran her tiştî bi mehneya "ewlekariya Îsraîlê" rave dike. Ne ya Rûsya, ne jî ya Îranê helwesta şer e. Rûsya bi derbxwarina têkiliyên siyasî û aborî berteka xwe dide der. Tehran jî 'mêrantiya xwe' bi gefxwarina li Îsraîlê dihêle. Lê dibe ku ew jî tenê zirtek be, ji ber ku berdêla hewldana wê giran e.

### Şîrove û îdîayên eniya din

Di nêrîna DYA û hevalbendên wê de têgihiştineke hevpar tine ye. Ji ber ku rewşa dewletan ji hevûdin gellekî cuda ye. Siûdî û Qeter melîkî ne. Tirkiye hevalbend e, lê yeke gumanbar. Misir dîktatorî ye û di nav kêşeyên xwe de li ber xeniqandinê ye. Li Ewropayê û heya ku li DYAyê raya giştî û komên siyasî ji Cîhadiyan bizdane, mînakên Misir û Lîbyayê ew têr tirsandine û qet naxwazin tevlî herrî û dînîtiya Rojhilata Navîn bibin. Rasterast ji bo DYAyê mînakên tirsê weke Afganistan û Iraqê hene. Li Îngilîstanê parlementoyê piştgiriya êrişê neda hikûmeta xwe. Serokê DYAyê jî biryarê xwe spart pêjirandina Kongreyê. Jixwe DYAyê, li Rojhilata Navîn, ji binî ve xerakirina hevkêşeya Şiî û Sunniyan nedaye pêşiya xwe. DYA naxwaze têkiliyên xwe bi Rûsyayê re zêdetir xera bike. Dibe ku bi gefa operasyonê bêhtir vekirina rêya çareseriyeke siyasî dabe pêşiya xwe û dibe ku tê de serkeftî be jî. Piştî ewiqandina DYAyê, jixwe Frensa bi serê xwe ne xwedî wan derfetan e ku bi xwe tiştekî bike.

Cihê pirsê ye: DYA çima hewqas dereng ma? Dibe ku gaz û petrola herêmê ji bonê êdî hewqas ne girîng in. Dibe ku faktorên li jorê rêzkirî sedem in. Çi be jî, ya misoger ev e: Heya fişeka dawî lêçûnên xwe li Siûdî û Qeterê neke û tawîzên mezin ji dewletên weke Tirkiyeyê û partiyên şer nestîne, DYA gavekê navêje.

### Sedem an jî mehne: Çekên kîmyewî

Tevî nakokiyên navxweyî jî, bereya DYAyê berpirsiyariyên navneteweyî dide pêş. Eger li welatekî li dijî mirovahiyê komkujî hebin, an jî çekên kîmyewî hatibin bikaranîn, di qada navneteweyî de mafê têkilbûn an jî operasyonê derdikeve holê! Lê gotina "maf" têra fêmkirina rewşê nake. Ji ber ku bikaranîna vî "mafî" tenê di destê penç dewletên mayinde yên Konseya Ewlehiyê ya Yekîtiya Neteweyan de ye, eger pêwîst be, ji wan jî tenê di destê DYAyê de ye. Mixabin nexşeya siyasî ya navneteweyî wisa hatiye avakirin û sîstemeke jê çêtir an jî vebijarka wê nayê zanîn. Herçiqasî gellek operasyonên bi vî rengî piştgiriya raya giştî wergirtibin jî (Rwanda/1994, Bosniya û Herzegovîna/1995, Kosova/1999 û Iraq/1991 û 2003), di bikaranîna mafê navborî de keyfîtî û bedkarî jî heye (weke Şerê Koreyê/1950-1953).

**Şam birûxê, Tehran di rêzê de ye. Tehran bikeve, Çîn ji petrolê dûr dikeve, derdora Rûsya tê girtin û dora tevlîhevkirinê tê welatên rasterast cîranên Rûsyayê.**

Mijar çekên kîmyewî an jî jehrî be, rasterast êşên me Kurdan têne bîra mirov. Ji ber ku bi dupîvanî û bi rûreşiyeke mezin xwe nêzî me kiribûn. Êşa Halepçeyê (1988) hêj germ e. Eger em lêbikolin, hêj di serê 1920an de Winston Churchill ji fermandarên RAFê (Hêzên Hewayî yên Brîtanyayê) xwestibû ku li himberî serhildêran (Kurdên Başûr) bombeyên gaz û xerdelê bikarbînin. Eger em zêdetir pêve herin, wê di serdema 1990an de li Bakurê Kurdistanê gellek tawanên artêşa tirk yên çekên kîmyewî derkevin holê. Li seranserê dinyayê heman mînakên xemsariyê gellek in. Ji ber berjewendiyan, rê li ber bikaranîna çekên kîmyewî, herwiha komkujiyan nedihat girtin.

### Qama Tirkiyeyê derket holê

Tirkiye xwe li quretiyan datîne, xwe weke hêzeke ne tenê herêmî, lê yeka navneteweyî dibîne. Lê vêga navê wê di operasyona cezakirina Şamê de jî naborê. Tirkiye hêza xulamtiyê ye û bertekên wê tam li gorî vê erkê ne. Yên qedera Sûriyê destnîşan dikin, DYA û herdu hevalbendên wê yên sereke ne. Tirkiye ne di govendê de ye, direqise lê haya ti kesî jê tine ye.

Siyaseta Tirkiyeyê ya "bi cîranan bêpirsgirêkî" serpiştî li erdê ye. (Ji rewşenbîrên kurd yên evîndarên wê polîtîkayê re hişyarî!) Navê Tirkiyeyê bi piştgiriya mîlîtanên al-Qaide û komên din yên cîhadî re bûye yek. Ji zû ve diyar e ku pêşeroj û dawiya qeyran û şerê li Sûriyê çawa be jî, wê Tirkiye xesar bike, wê berdêla xeletiyên xwe bi giranî bide.

### Em Kurd di keştiyê de ne

Erîşa DYAyê bibe û nebe jî, ji sînorên Sûriyê bibore û nebore jî, em Kurd, bi taybetî jî yên Rojava, tê de ne.

Divê ji bo me Kurdan ev rastî diyar be: Herdu aliyên şer jî sûcdar in. Herdu alî jî dikarin çekên kîmyewî bikarbînin, xisletê wan rê dide vê hovîtiyê. Kê çekên kîmyewî bikaranîne? Bedkarî li bûyerê dibe? Provokasyon e? Êdî ev pirs hemû bêwate ne. Ya diyar û misoger: Yek alî jî nikare bi ser bikeve û her roja diçe, hejmara mirî û koçberan zêde dibe. Hewcedarî bi însyatîfeke navneteweyî heye, da ku rê li ber werankarî û komkujiyan bigire û da ku ji bo çareserkirineke aştiyane, laîk, demokratîk û adilane, bingehekê biafirîne.

Eger bi mebesta navborî operasyonek lidarbikeve, çima em Kurd li dij rabin? Ma însyatîfeke navneteweyî, bi şer an jî siyasî, ji însyatîfa Şam, Enqere, Tehran û Bexdayê ne çêtir e? Ma ne diyar e ku eger bi ya hêzên herêmî be, em Kurd ti caran li Rojava tiştekî bi dest naxin?

Hişyarbûn û ji bo hemû vebijarkan amadeyî erê, lê divê Rojavayî haya xwe bidin hêz û hesta navneteweyî jî. Însyatîfa navneteweyî çiqas nêz be û bandora dewletên herêmî çiqas kêmtir bibe, hewqas di berjewendiya me Kurdan û civakên din de ye.

Tenê bi propagandayê keştî nameşe. Ya derbasbar rastî ye, derbên wê biêş bin jî.



# Projeya lihevkirina ENKSê û hevpeymaniya rikberiyê

**Helîm Yûsiv**

Piştî danûstendinên dirêj li Stembolê, şandeya ku ji berpirsyarên têkiliyên derve yên Encûmena Niştimanî ya Kurdî (ENKS) pêk dikat, bi berpirsyarên Hevpeymaniya Niştimanî ya Hêzên Şoreş û Rikberiya Sûrî (Îtîlaf) re gihişt lihevkirinekê. Di 26.08.2013ê de projeya peymana ku tê de li ser 16 xalan lihevkiribûn, di çapemeniyê de hate weşandin. Ev proje wê ji aliyekî ve biçe ber destên endamên birêveberiya ENKSê û ji hêla din ve wê biçe ber destên endamên birêveberia Îtîlafê. Piştî erêkirina herdu aliyan, wê di 27.09.2013ê de ji herdu aliyan ve bê îmzekirin. Xalên giring yên vê lihevkirinê dikarin bi vî awayî bêne rêzkirin:

- ***Miletê kurd bi nasnameya xwe ya neteweyî di destûrê Sûriyê de bê naskirin.***
- ***Hemû siyasetên zirarker yên li dijî Kurdan ji holê bêne rakirin û mafên kesên ku zirar dîtine li wan bêne vegerandin.***
- ***Sûriya nû wê komareke demokrat be, rejîma wê xwe bispêre sîstema birêveberiya ne navendî, bi awayekî ku desthilatdariya birêveberiya herêmî xurttir bike.***
- ***Şoreşa Sûriyê, wekî ku ala serxwebûnê wekî sembol ji xwe re hilbijart, wê navê dewletê jî yê dema serxwebûnê ji xwe re hilbijêre. (Mebest jê, li şûna ku navê dewletê "Komara Erebî ya Sûrî" be, wê wekî "Komara Sûrî" bê binavkirin)***
- ***Wê ENKS bi yazde endaman di Îtîlafê de bê temsîlkirin. Yek jê cihgiriya serok û deh jê di birêveberiya giştî de.***

Hemû xalên din dikevin çarçoveyeke giştî, ku têkiliya wan bi van xalên ku me li jor hejmartin re heye. Yekem têbiniya ku bala her kesê ku siyaseta Kurdên Rojava dişopîne, ew e ku ENKS bi daxwaza xwe ya federasyonê ji bo Kurdan dihat naskirin. Pirraniya serokên partiyên di nav ENKSê de ji di salan vir de sîstema federaliyê wekî çareserî didîtin û sedema sereke ya lihevnekirina wan û Encûmena Rojavayê Kurdistanê ya ser bi PYDê, ku "xweseriya demokratîk" pêşniyaz dike, ev xal bi xwe bû. Girêdayî vê yekê, sîstema birêveberiya ne navendî, ango birêveberiya herêmî, jixwe ji berê de li Sûriyê heye û daxwaza bicihkirina wê rê li ber xweserî yan taybetiya herêmeke kurdî bi temamî digire. Wisa jî rê li ber sembolên Kurdan yên taybet tê girtin, mîna ala kurdî, yan jî binavkirina Kurdistanê û herwisa. Ji ber vê jî, serokê Îtîlafê, Elcerba, beriya zuhabûna hibra vê peymanê di rojnameya Alhayat de bi zelalî ragihand ku tiştek bi navê herêmên kurdî li Sûriyê tine ye.

Xala ku ENKSê wekî serkeftinek ji xwe re didît, guherandina navê dewletê bû, ku tenê Sûrî ye û bêyî peyva erebî bê bikaranîn, lê Elcerba ew kêfa wan jî ji wan re nebir serî. Yekser piştî vê lihevkirinê, dîsa Elcerba di hevpeyvîna bi televizyona LBC de ragihand ku Sûrî welatekî erebî ye û heta hetayê wê bimîne erebî. Herweha hin partiyên ENKSê bi xwe jî nehaydarbûna xwe li hember vê peymanê nîşan dan. Tevî ku peyman ne Kurdan wekî miletekî xweser nasdike, ne jî herêmeke wan ya taybet nasdike, ne jî ala wan ya neteweyî nasdike û ne jî otonomî, birêveberiya xweser, yan jî federaliyê nasdike, dîsa jî dengên bilind li dijî pejirandina wê ji nav birêvebiriya Îtîlafê bi xwe derketin. Wisa jî ji ber heman sedeman şensê vê peymanê di razîkirina Kurdan û misogerkirina mafên wan yên bingehîn de nîne. Bi vî awayî mirov dikare bi dilekî xemgîn bibêje ku yekem peymana ku di navbera beşekî mezin ji hêzên rikberiya erebî û beşekî mezin ji rêxistin û partiyên Kurdan de, mirî jidayik bû. Lê, bi her halî gaveke giring bû di pêvajoya têkiliyên herdu aliyan de, ku bi îmzekirina wê, û bi neîmzekirina wê jî, wê guhertineke mezin di cih û tevgera herdu aliyan de çêbike.



## Berpirsekî amerîkî ji Rûdawê re:

# Washington ne ligel şandina petrola Kurdistanê ji bo Îranê ye

**Armando Kurtuba**
*Hewlêr*

Piştî belavbûna nûçeya şandina petrola Herêma Kurdistanê ji bo Îranê, berpirsekî konsûlxaneya amerîkî li Hewlêrê ji Rûdawê re ragihand: “Amerîka piştgiriya şandina petrola Herêma Kurdistanê nake, bêyî razîbûna hikûmeta navendî.”

Li gor nûçeyeke Iraqi Business News, zêdeyî du mehan e rêyeke nû ya bazirganiyê di navbera Herêma Kurdistan û Komara Îslamî ya Îranê de çalak bûye û petrola xam bi rêya sîtêran ji zeviyên petrolê yên Herêma Kurdistanê bo bêndera Xumeynî li Îranê tê veguhestin.

Wî berpirsê konsûlxaneya Amerîkayê, ku nexwest navê wî bê eşkerekirin, got jî: “Helwesta Amerîkayê nehatiye guhertin û hêj Washington qayîl nebûye derbarê firotina petrolê bi awayekî serbixwe ji aliyê Hewlêrê ve û vekirina wî dergehê bazirganî.”

Her çiqasî rêjeya şandina petrola xam bi rêya sîtêran bo Îranê bi tevahî nayê zanîn, lê li gor hin raportan rojane 30 hezar bermîlên petrola xam bi wê rêyê ji Herêma Kurdistanê bo Îranê tên şandin.

Wî karbidestê amerîkî herwiha got: “Em daxwazê ji hikûmeta Iraqê û Herêma Kurdistanê dikin ku bêyî derengxistin bi rêya diyalogê nakokiyên xwe nehêlin, da ku rewşeke hilberîn û vejîneke baştir ji Iraqiyan re peyda bikin.”

Razîbûna li ser veguhestina petrolê bo Îranê, eger rast be, wek hewldaneke din a hikûmeta Herêma Kurdistanê tê hejmartin, bo piştguhxistina daxwazkariya berdewam ya Bexdayê ku şandina petrolê bêyî şêwira wê nabe pêk were.

Berpirsên kurd jî bi coşdarî çaverêyî vekirina wan boriyên petrolê dikin ku bi rêya wan petrol ji Herêma Kurdistanê bo Tirkiyeyê tê veguhestin. Bi vî rengî jî deriyekî serbixwe yê şandina petrola Kurdistanê bo cihanê vedibe. Hikûmeta Iraqê hişyariyeke tund daye hikûmeta Herêma Kurdistanê derbarê vekirina boriyên petrolê de, ku pêk tên ji boriyên petrolê yên Teqteq, Xurmele û Pêşxabûr û dibe ku dawiya îsal bên amadekirin.

Li hember vê serkêşiya hikûmeta Herêma Kurdistanê di siyaseta petrolê de, Bexdayê beşek ji pişka butçeya hikûmeta Herêma Kurdistanê birriye. Vê yekê zext xistin ser hikûmeta Herêma Kurdistanê, da ku dergehên bazirganî yên din ji bo bidestanîna dahatê bibîne.

Wî berpirsê amerîkî bi rêya Rûdawê hişyariyeke ne rasterast derbarê tevgera bazirganî di navbera Îran û hikûmeta Herêma Kurdistanê de da: “Em şîretê li hikûmetên navçeyê dikin û ji wan re dibêjin niha ne demeke baş e ji bo xurtkirina bazirganiya bi Îranê re.” Komara Îslamî ya Îranê li gor Amerîkayê “hikûmeteke tirsnak” e, lewma jî ti pêwendiyeke dîplomatîk di navbera Washington û Tehranê de nîne.

# Xeta Kurdistan -Tirkiye rêya serxwebûnê vedike

**Umer Ehmed**
*Hewlêr*

Malpera oil-price a taybet bi petrol û gazê, di raportekê de behsa wê yekê dike ku Tirkiye bi bêdengî û veşartî pêgeha xwe di pîşesaziya petrola Herêma Kurdistanê de xurt dike.

Tirkiye, da ku girêdana xwe bi xaza Rûsya û Îranê ve kêm bike û li jêr guşara van welatan rizgar bibe, hin bi hin tê nav pîşesaziya petrola Kurdistanê. Ji bo pêkanîna vê stratejiya nû, ku Bexdayê gellekî dilteng dike, Tirkiyeyê di çend mehên borî de ji bo gerr û dîtina petrolê li Herêma Kurdistanê kompanyayeke nû ya petrolê damezirand, ku hikûmeta vî welatî piştgiriya wê dike. Pişkdarên vê kompanyaya nû kompanyaya petrola hikûmî ya Tirkiyeyê TPIC û kompanyaya hikûmî BOTAS in, ku ligel kompanyaya Exxon Mobil a amerîkî li zeviyên petrola Herêma Kurdistanê çalak û hevbeş in.

Kêmbûna enerjiyê li Tirkiyeyê wiha kiriye ku ev welat jî li beramber her bûyereke derve û her şokekê, ku buhayê petrol û gazê bilind dike, gellekî hesas û lawaz be. Pêwîstiya Tirkiyeyê ya bi enerjiyê sal bi sal zêdetir dibe, lewma bi xurtî hewl dide ku buhaya kirrîna enerjiyê kêm bike.

Jêdereke nêzîk ji kompanyaya TPIC ji Reuters re ragihand: "Dema ev kêmaniya te ya zêde ji enerjiyê hebe û ev jêdera mezin bi rastî li wî aliyê sînor hebe, tu nahêlî ne Bexda û ne ti aliyê din rêgiriyê li ber hilberîna te li vê deverê bikin." Pêwîstiya Tirkiyeyê bi enerjiyê wiha kir ku Enqere metirsiyên sarbûna pêwendiyan ligel Bexdayê qebûl bike, ku herdem veberhênerên derve agahdar dike ku ligel Herêma Kurdistanê kar nekin, ji ber ku tirsa wê heye ku bi xurtbûna Herêma Kurdistanê Îraq ber bi dabeşbûnê ve here.

Mamosteyê zanîngehê û şarezayê petrolê, Dr. Hawrê Mensûr Beg, di warê guhertina nêrîna Tirkiyeyê derbarê Herêma Kurdistanê de dibêje: "Pêwîstiya Tirkiyeyê bi enerjiyê hokara sereke bû ji wê yekê re ku ev welat pêwendiyan ligel Herêma Kurdistanê ji aloziyan ve veguherîne hevpeymaniyeke stratîjî ya demdirêj." Li gor Dr. Hawrê, pêwîst e jêderên petrol û gaza Herêma Kurdistanê bi projeyên veguhestina petrol û gazê bên girêdan, ku di axa Tirkiyeyê re derbas dibin û petrola welatên perava deryaya Qezwînê vediguhêzin Ewropayê.

Li gor malpera oil-price, bi bidawîbûna hêla petrola Herêma Kurdistanê bo Tirkiyeyê wê rojane 200 hezar bermîlên petrolê yekser bo Tirkiyeyê bên şandin. Ajansa Reuters dibêje mebesta Herêma Kurdistanê ji damezrandina vê hêla petrolê bo Tirkiyeyê bidestxistina serxwebûnê ye ji Bexdayê.

Li gor raportên dawî yên kompanyaya DNO, ku hevbeş e ligel kompanyaya tirkî-îngilîzî Genel Energy li zeviya Tawkê, ji bo bidawîbûna vê hêlê tenê çend kîlometre. Rêveberê giştî yê kompanyaya DNO li Kurdistanê, Nicholas Atencio, ji Reuters re ragihand ku hêla Herêma Kurdistanê tenê çend sed metreyek maye bo wêstgeha Pompage a Pêşxabûrê, ku tenê 5 km ji sînor dûr e.

Ev hatina Tirkiyeyê bi bêdengî bo nav pîşesaziya petrola Herêma Kurdistanê hevdem e ligel pêşxistina hewlên aştiyê ji bo çareserkirina kêşeya kurdî li vî welatî, ku bi dirêjiya 30 salên borî kêşeya sereke ya vî welatî bû.

Mezopotamya
Weqfa Şandina Cenazeyan


Mezopotamya canazeyên we dişîne herçar beşên Kurdistanê
Di rojên dijwar de em bi we re ne
Tel.: 02331 - 47 33 886
Mobil:
0178 - 18 56 970
0172 - 27 24 163


Navnîşan: Frankstr. 6 • 58135 Hagen/Almanya
E-Mail: sigortaci-alp@hotmail.de
www.mezopotamya-cenazefonu.com
Reklam




8. kongreya PENa Kurd li Amedê hat lidarxistin

## Sekreterê PENa Kurd, Kakşar Oremar:

# Herêmparêz li pêşiya PENê asteng in

Di 18ê Gulana 2013ê de Navenda PENa Kurd 8. kongreya xwe li Amedê lidarxist. Derbarê karûbarê PENa Kurd, sedemên lidarxistina kongreyê li Amedê û rewşa PENa Kurd bi giştî, em bi sekreterê Navenda PENa Kurd Kakşar Oremar re axivîn.

**Rûdaw: Rêxistinên PENê piştgiriyê ji dewletên xwe yan jî ji dezgehên civaka sivîl dibînin, lê ya kurd? Nexasim ku Kurd ne xwedî dewleteke serbixwe ne û dezgehên wan tine ne.**

**Kakşar Oremar:** Dema ku karê PENa Kurd di nava endamên din yên PENa navnetewî de berfireh bû, gellek partî û rêxistinên siyasî xwestin ku hevkariya me bikin. Lê li gor zagonên PENê, karekî wiha li dervey karê me ye û nayê pejirandin. Her cara ku ji bo semînar, konferans an jî kongreyên xwe me daxwaz ji saziyên sivîl kiribe, hevkariya me kirine. Enstîtûya Kurdî li Berlînê çend caran hevkariya me kirine. Em ji bo çalakiyên xwe piştgiriyê ji endamên xwe distînin. Carnan jî hinek hunermendên kurd bi pêşkêşkirina konsertan hevkariya maddî ji PENa Kurd re kom kirine. Eger hemû endamên PENa Kurd (hejmara wan zêdetirî 100 kesan e) pereyên endametiya xwe ya salane bidin, heya radeyekê pirsgirêkên me yên maddî tên çareser kirin.

**Başûr ji demeke dirêj ve azad e, çima navenda PENa Kurd neçû welêt?**

Ji ber ku tevî hemû hewldanên me ji bo karekî wiha, kesî bersiva me neda. Hinek rewşenbîrên herêmperest li Başûrê Kurdistanê hene ku naxwazin zimanekî Kurdan yê yekgirtî durist bibe. Herwiha li dijî rênivîsa latînî ne. Ew dizanin dema em li wira bin, emê ji bo can armancan xwedî plan û xebatên berfireh bin. Dema em li ser çûyîna PENê bo Başûrê Kurdistanê dixebitîn, astengî û dijderketin ji pêşwazî û hevkariyê zêdetir bûn. Piştî kongreya 8ê hinek kesên bi mejiyê xwe perçebûyî jî li dijî me "daxuyanî" derxistin, lê zû zanîn ku ketine ser rêyeke şaş û xwe paş ve kişandin.

Pena Kurd saziyeke Kurdistanî û milkê hemû Kurdên Kurdistanê ye. Nûnerên me li her çar perçeyên Kurdistanê hene û aktîv in. Di pêşerojeke ne zêde dûr de em li Başûr û Rojava jî konferans û kongreyên xwe lidardixin. Ji me re ferqa Hewlêr û Amed, Urmiye û Qamîşlo nine.

**Çima niha PENa Kurd berê xwe da Amedê?**

Di kongreya sêyemîn ya Navenda PENa Kurd de (Berlîn 01.02.1997) li ser pêşniyara rêzdar Dr. Zerdeşt Haco biryar hat girtin ku cihê Navenda PENa Kurd li gorî derfetan ji koçberiyê were guhertin û here Amedê. Piştre di Kongreya PENa Navneteweyî de, ya ku di 2011ê de li Belgradê hate lidarxistin, ev pêşniyar bi rêya du nunerên PENa Kurd, Dr. Bêrivan Doskî û Abdulla Hicab, kete fermîyetê û wekî biryar hate qebûlkirin. Ji ber vê yekê Navenda PENa Kurd ev biryar praktîze kir û bi vê armancê kongreya xwe ya 8. li Amedê lidarxist. Her gumaneke din, ku veguhestina Navenda PENa Kurd li ser biryarên siyasî û di bin bandora hin aliyên siyasî de hatiye pêkanîn, bêbingeh e. Em endamên KBG ya nû û ya berê tenê ji bo berjewendiyên gelê kurd têdikoşin. Wê PENa Kurd serbixwebûna xwe heta dawiyê biparêze.

**Hinek nivîskar li Bakur, hinek jî li Başûr dixwazin şax in din yên PENa Kurd çêbikin. Hûn van hewldanan çawa dibînin?**



Li cihanê her neteweyek dikare xwedî PENekê be. Belkî hinek li welatên weke Kanada û Awistiralya şertên erdnîgarî bûne sedem ku du PENên wan hebin, lê di dawiya dawî de, bi rêya teknîka ragihandinê di PENa navnetewî de ew jî xwedî yek biryar in. Kurdistan jî welatekî perçebûyî ye, lê heya radeyekê em dikarin bên cem hev. Çendîn caran ji aliyê hinek endamên Komeleya Nivîskarên Kurd li Amedê daxwazeke wiha ji PENa navnetewî hatiye kirin ku PENa duyemîn jî li Bakurê Kurdistanê bê avakirin, lê sala 2005ê, gava rêzdar Prof. Terry Carlbom nûnerê PENa navnetewî li Amedê bû, wî di civînekê de em hişyar kirin ku karekî wiha qedexe ye û Navenda PENa navnetewî dikare mafên xwe yê zagonî bikarbîne. Di kongreya dawiyê de jî daxwazeke wiha hebû, lê ji ber ku pirraniya nivîskar û rewşenbîrên Amedê ne bi pêşniyareke wiha re bûn, daxwaz hate redkirin. Birêveberiya PENa Kurd jî li dijî karekî wiha ye.

Bi çûyîna navenda kar û xebatên PENa Kurd bo Bakurê Kurdistanê êdî niha kesên ku xwedî daxwazeke wiha bûn, dikarin wek endam li wira jî xebata xwe bidomînin.

**Ji niha û pê de wê kar û barê PENa Kurd çawa bimeşe?**

Tevî hemû zehmetî û astengiyên ku hene, emê karê xwe di sewiyeke berfirehtir de bimeşînin. Em ji bo nasandina çand û wêjeya Kurdan di asteke navnetewî de xwedî armancên pîroz in. Di meha pêşiya me de wê şandeke ji PENa Kurd ji bo danûstandin û endamkirina nivîskarên Başûr û PENa Kurd herê bajarên navendî yên mîna Duhok, Hewlêr û Silêmaniyê.

**Hevpeyvîn: Helîm Yûsiv**

Reklam
BERTAX - CONSULTANT
Unternehmensberatungsgesellschaft mbH

Mihasebeya we di destên ewle de!
Mihesebeya Malî
Finanzbuchhaltung
Mihesebeya Karkeran
Lohnbuchhaltung
Office-Essen
Zeche Katharina 2
45307 Essen
Tel.: 0201/8933950
Fax: 0201/8933951
Mobil: 0177/3147213
E-Mail:
info@bertax-consultant.de
Office-Dortmund
Geschwister-Scholl-Str. 26
44135 Dortmund
Tel.: 0231/15044-510
Fax: 0231/15044-115

Elif jibo Şandina Cenazeyan
ألیف لخدمات دفن الموتی
مساعدات فوریة في حالة الوفيات
Arina Travel

ŞABAN ÇITLAK
Em cenazeyan ji Almanyayê digînin hemu cîhan û herçar beşên Kurdistanê
الإيصال حتى الوطن / الرعاية والإستشارة
Blaschkoallee 73
12359 Berlin
saban.citlak@gmx.de
Peywendîkirin bi kurdî
030 569 769 45
0179 675 40 21
TEL: 030 915 943 94 FAX: 030 287 084 05 MOBIL: 0176 215 111 73

Parêzer Uzun Buroya Parêzeriyê
Em li seranserê Almanyayê di xizmeta we de ne
Reklam
Beşên me yên kar
Dadweriya Kar (Arbeitsrecht)
Dadweriya Aborî (Wirtschaftrecht)
Dadweriya Trafîkê (Verkehrsrecht)
Dadweriya Werzişê (Sportrecht)
Dadweriya Peymanê (Vertragsrecht)
Dadweriya berpirsiyariya pizîşkî (Arzthaftungsrecht)
Parêzer Oktay Uzun
Navnîşan:
Sonnemannstr. 3
60314 Frankfurt am Main
Tel.: 069 – 49 600 87
Fax: 069 – 49 600 88
email: info@kanzlei-uzun.de
web: www.kanzlei-uzun.de

PARÊZER / RECHTSANWALT
Bariş Yeşil
Tel.: 0231 - 95 01 85 40
Fax: 0231 - 95 01 85 41
Mobil: 0177 - 17 60 359
Schwanenwall 5
44135 Dortmund
info@ra-yesil.de
www.ra-yesil.de

PARÊZERÎ Û ALÎKARIYA WE BI ZIMANÊ ME


www.Marfakurd.org

## Qelewbûna piştî devjêberdana cixareyê

Qelewbûn dibe derdê gellek kesên ku dev ji cixareyê berdidin. Di rewşên wisa de kesên kîloyan werdigirin didin zanîn ku ew ji berê zêdetir xwarinê naxwin lê belê digel vê yekê jî ew qelew dibin. Zanyarên nexweşxaneya Zurichê piştî lêkolîneke berfireh ev yek piştrast kirin û dan zanîn ku sedemên qelewbûna kesên dev ji cixarê berdidin ne xwarinxwarina zêde ye.

Di encama lêkolînê de diyar bû ku mîkrobên bi navên "Proteobacteria" û "Bacteroidates" dibin sedama hokara qelewbûnê. Bi taybetî piştî dev ji cixarê tê berdan, hejmara van mîkroban di nava roviyan de pirr dibe.

Hinek cûreyên mîkrobên di nava rovî de enerjî û xwarinê vediguhezin raçînkeyên dohn. Ev yek jî dibe sedem ku dohn xwe di nava zik û kemaxan de kom bike. Li gor pisporan, sedema qelewbûna gellek kesan mîkrobên bi vî şêwazî ne, lê hê jî nayê zanîn ka ev mîkrob çawa dikarin werin bertefkirin.



# Mîgren bandorê li binyada mejî dike



Li gor lêkolînekê, nexweşiya mîgrenê di binyada mejî de, ango di strûktûr de, guhertinan pêk tîne. Zanyaran bi rêya MRI (tomografî) danînberheva mejiyên kesên saxlem û yên bi nexweşiya mîgrenê çêkirin. Encama vê lêkolîna zanîngeha Kopenhagê di kovara "Neurology" de hate weşandin. Di encama vê danberhevê de diyar bû ku ji ber nexweşiya mîgrenê di maddeya spî ya mejî de guhertin pêk tên û ev yek jî dibe sedema pêkhatina lezyonan. Ji ber vê bandorê jî di binyada mejî de guhertin rû didin.

Li gor texmînan, li seranserê dinyayê bi giştî ji sedî 2yê mirovan bi nexweşiya mîgrenê ya kronîk dijîn. Mîgren bandorê li 7% mêran û 18% jinan dike. Digel ku hejmara mirovên bi vê nexweşiyê bilind e û êşa serî ya gellek kesan heta 72 seetan jî dikare bidome, hê jî çareseriyeke maqûl jê re nehatiye dîtin.

## Fêdeyên qehwê jî hene



Di nava civakê de qehwe wekî vexwarinek bi ziyan tê zanîn. Lê zanîngeha Harvardê encameke balkêş di vî warî de bidestxist. Li gor lêkolîna zanîngeha Harvardê, jinên ku qehweyê venaxwin ji yên ku qehwê vedixwin depresîftir in. Qehwe di warê hişyarkirina sîstema hêrsbûnê de jî xwedî peywireke taybet e. Dema qehwe tê vexwarin, piştî du seetan hiş ji berê baştir vedibe. Ji hêla din ve, ji bo êşên serî, yên wekî mînak ji ber vexwarina şarabê, qehwe dikare bibe derman. Bi vexwarina qehweyê ev êş dikarin werin rawestandin. Aliyekî din yên vexwarina qehweyê qewînbûna laş e. Pêşiya mirov bibeze, vexwarina qehwê bi tasek av wê mirov ji bo bazdanê bihêztir bike.

## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Tembûrvan, kesê li sazê dixe – Alet û alava ku li ser bênderan pûş hûr dike. **2-** Paşmayî, zadê ku piştî çinînê li erê dimîne – Xak, zemîn, ax – Hurmet, qedr, qîmet. **3-** Gurbûna agir, têhna agir – Mezinên dewletê – Bangdana melê. **4-** Markayek makyaj û kozmetîkê (berepaş) – Baharatên ku tam û lezîzbûna xwarinê zêdetir dikin (berepaş) – Erd û axa ku xanî li ser tên avakirin. **5-** Pronavê yekem – Di muzîkê de ketina deng, bêserûberîya deng. **6-** Bi Erebî "civak, cemaet, derûdor" (berepaş) – Fîlmek sînemayê. **7-** Wek beranan, dişibe beranan (berepaş) – Kewî, aleta ku kinc pê tên rastkirin (berepaş). **8-** Kurtenivîsa "doktor" – Kesê ku erdê cot dike, rêncber (berepaş). **9-** Beredayî, eware (berepaş). **10-** Evîndara dil, cana min (berepaş) – Tîm, grûp.

**Serejêr: 1-** Bê kar, zugurd, serberdayî – Roja xutbê. **2-** Kesê diafirîne, şareza, jîrek. **3-** Mêrê bûkê – Qîrîn, zarîn, hawar. **4-** Hunermendek Kurd – Damar, kok, çare. **5-** Bedel, cezayê xeletî yan zirarekê (berepaş). **6-** Na, nabe – Damezrênerê tarîqatek olî ku di sedsala 17 an de li derûdora bajarê Izmîrê derketiye holê (berepaş). **7-** Merd, ciwamêr, xweşmêr (berepaş) – Wezîfe, kar (berepaş). **8-** Bi Almanî "bakur" (berepaş) – Feqîr, belengaz, şemitî (berepaş). **9-** Îsotên rexl, îsotên nûçêbûyî (berepaş). **10-** Li Swîsreyê çem û rûbarek (berepaş) – di devê xwe de bir û anî, hûr kir (berepaş). **11-** Ne mê, zilam, mêr (berepaş). **12-** Du tîpên alfabeyê (tîpa 3 û tîpa herî dawîn). **13-** Ast, bergeh, derence (berepaş). **14-** Raket, xwe dirêj kir, nivist. **15-** Cemidî ye, ne germ e (berepaş). **16-** Cephe, hevkarî, tifaq (berepaş).

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ |
| 2 | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | | |
| 3 | | | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | |
| 4 | | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | |
| 5 | | | ■ | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 6 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 7 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 8 | ■ | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 9 | | ■ | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 10 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 213

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | N | A | N | Ê | S | Ê | L | Ê | ■ | Ç | A | R | E | S | E | R |
| 2 | A | L | Î | G | I | R | Î | ■ | H | I | L | A | N | Î | N | ■ |
| 3 | N | Î | J | E | R | Y | A | Y | Î | ■ | A | F | E | R | Î | N |
| 4 | Ê | L | E | B | ■ | E | Q | A | L | Î | Y | E | T | ■ | D | O |
| 5 | T | E | H | D | Î | T | ■ | S | E | N | | | | | | |
| 6 | E | C | ■ | Î | S | ■ | S | E | B | A | | | | | | |
| 7 | N | ■ | B | E | R | K | E | M | A | L | | | | | | |
| 8 | Û | R | E | S | A | R | ■ | Î | Z | M | | | | | | |
| 9 | R | E | Z | ■ | Î | ■ | Î | N | ■ | E | | | | | | |
| 10 | Ê | Ş | ■ | A | L | A | N | ■ | A | K | | | | | | |

www.arsivakurd.org

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# BÊRÎVAN



Bêrîvan pênç salî ye. Ew bi zimanê kurdî û hem jî yê almanî baş dizane. Ew gellekî hez ji Barbie ya xwe dike. Ew niha diçe baxçeyê zarokan. Gellek hevalên wê li baxçeyê zarokan hene. Xuşkên wê û birayê wê dibêjên "Berîvan gul û çîçeka malê ye."

# Gur



Di dema pirr kevin de mirovan gur girtine û ew kedî kirine. Eslê kûçikan ji gurên kedîkirî tê. Bêvila guran jî mîna ya kûçikan pirr baş bihnê dike. Gur bi tena serê xwe nagerin, ew di nav ref de dijîn. Ji ber ku bikaribin arîkariya hevdu bikin, ew bi hevdu re diçin neçîrê. Gur dikarin pirr zû û demeke dûrûdirêj bimeşin. Ew dikarin di nav rojekê de 200 km bimeşin.



# ZARDOKU

| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| | | 5 | 6 | | |
| | 4 | | | 1 | |
| | 6 | 2 | 5 | 3 | |
| 5 | | 6 | 3 | | 2 |
| 4 | | | | | 1 |
| | 3 | 1 | | | 5 |

Bersiva ZARDOKU

| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| | | 5 | 6 | | |
| | 4 | 3 | 2 | 1 | |
| 1 | 6 | 2 | 5 | 3 | 4 |
| 5 | | 6 | 3 | | 2 |
| 4 | | | | | 1 |
| 2 | 3 | 1 | 4 | 6 | 5 |

## Şertên ZARDOKU

Tenê hejmarên 1 heya 6 bi kar bîne, lê nabe hejmarek du caran di yek rêzê de bê bikaranîn: ji çep ber bi rast, an jî ji jor ber bi jêr.



# BIRESMÎNE




www.arsivakurd.org